3

بەقسەی کۆنسوڵی گشتی ئێران لە هەولێر:



## ئەوانەی لە ئێران لەسێدارە دراون تیرۆریست بوون

13 / 12

ئەبوبەکر عەلی، ئەندامی مەکتەبی سیاسی یەکگرتوو :

## ئێستا کێبرکێ لەنێوان یەکگرتوو و گۆڕاندایە

Rûdaw
ÇAPA EWRÛPA
Rojnameya Kurdên Diyaspora

Helwesta CHP'ê hîn jî ne zelal e 10



## Kiliçdaroglu li dij e, Sezgin Tanrikulu ligel perwerdeya bi kurdî ye

Deutschland 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

Hejmar / Nr. 81 | 03 Sibat / Februar 2011

# Rikberiyek dijwar

3 »




## BDP: Em ê herî kêm 40 kursiyan bistînin!

Wêne: DIHA



## AKP: Em xurtir nebin, lawaztir nabin!

**Diyaspora**

### Kurdên diasporayê banga îttifaqê kirin

Komeke siyasetmedar û rewşenbîrên Kurd yekşema borî li bajarê Almanya Kolnê civinek lidarxistin û pêvajoya siyasî ya li Bakur guftûgo kirin. Mahmut Kilinç ragihand ku "Divê Kurd hêza xwe ya siyasî bi Dewleta Tirk bidin qebûlkirin û îttifaqekê çêbikin."

Rûpel ▶7

**Spor**

### Ber bi Federasyona Sportvanên Kurd ve…

Roja 22'ê Çileya 2011'an bi tevlîbûna nûnerên 13 tîmên sporê û gelek kesayetên ku di sporê de xwediyê ezmûn in, li Stockholmê civîneke hat lidarxistin û biryara damezrandina dezgeheke hat dayîn: Federasyona Sporvanên Kurd li Swêdê.

Rûpel ▶13

**WikiLeaks – Die Welt**

### Erdogan nûnerekî xwe şand cem PKK'ê

Hikûmeta Tirkiyê herdem îddia dike ku ew bi PKK'ê re rûnanê. Raportek nû ku li ser bingeha dokûmentên balyozxaneya Amerîka li Bexdayê - ku bi rêya WikiLeaks gihiştine rojnameya 'Die Welt' - hatiye amadekirin, rastiyek din nîşan dide.

Rûpel ▶2



4 191631 701506 00005




9 771869 104000 05

Great Britain



www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Li gor belgenameyeke WikiLeaks




DIE WELT

# Tirkiye û PKK li Başûrê Kurdistanê civiyane

▶Davutoglu: Em ne amade ne bi PKK'ê re rûnin.

▶Die Welt: Emre Taner li ser daxwaza Erdogan çûye li Başûrê Kurdistanê bi serokên PKK'ê re axifiye.


Wêne: Rûdaw



**Almanya (Rûdaw) –** Hefteya borî Wezîrê Derve yê Tirkiyê Ahmet Davutoglu di civîneke çapemeniyê de li Strasburgê dîsa helwesta xwe ya fermî dubare kir û ragihand ku: "Tirkiyê ne amade ye bi terorîstan re gotûbêjan bike." Davutoglu ev gotina xwe di bersiva pirsiyara rojnamevanekî de kir ku dixwest bizanibe Tirkiyê heta çiqasî amade ye bi PKK'ê re li ser çareserkirina doza Kurd li Tirkiyê danûstandinan bike. Lê li gor raporeke belavkirî ya malpera rojnameya Alman 'Die Welt', di sala 2007'an de serokekî dezgeha sîxuriyê ya Tirkiyê wek nûnerê Serokwezîrê Tirkiyê R.T. Erdogan, li Başûrê Kurdistanê bi serokên PKK'ê re danûstandin kiriye.

Rapora 'Die Welt' pişta xwe bi belgenameyeke nehênî ya balyozxaneya Amerîka li Bexda girêdide ku di roja 13'ê Adara 2008'an de ji Washingtonê re hatiye rêkirin û niha di destê rojnameyê de ye. Sedemê nivîsandina belgenameyê vegera Serokkomarê Îraqê Celal Talabanî ji serdaneke xwe ya fermî ji Tirkiyê û rûniştina wî bi balyozê Amerîkayê li Îraqê ye. Li gor dokumentê, Talabanî berî ku here Tirkiyê, bi Amerîkiyan re behsa wê yekê kiriye ku pêwîstiya serdana wî bi "amadekirineke baş heye, ji ber hinek mijarên nazik wek: Kerkûk, PKK û Îran." Ku wek Talabanî gotiye, ji ber van sedeman divê beşek gotûbêjên wî bi karbidestên Tirkiyê re "di asteke veşartî de" bin.

Dema di Adara 2008'an de Talabanî diçe Enqere, wek di belgenameyê de hatiye nivîsandin, tevî hevdîtinên wî yên fermî bi Serokkomarê Tirkiyê Abdulla Gul û Serokwezîr R.Tayyib Erdogan re, rûniştineke nehênî jî di navbera hersê serokan de tê kirin û dûre Talabanî li Bexdayê behsa vê civînê ji balyozê Amerîka li Îraqê, Ryan Crocker, re dike.

Li gor dokumentê, Talabanî di vê civînê de ji Erdogan re gotiye ku dema şandina Serokê Dezgeha Sîxuriyê ya Tirkiyê (MIT) Emre Taner, da ku bi PKK'ê re rûne - ku beriya operasyona 16'ê Adarê bû - ji Hikûmeta Başûrê Kurdistanê re pirsgirêkên ciddî derxistiye. Sedemê vê gotina Talabanî, wek dûre di belgenameyê de derdikeve, ew e ku Hikûmeta Herêma Kurdistanê di sazkirina gotûbêjên navbera Taner, wek nûnerê Hikûmeta Tirkiyê û serokên PKK'ê li Başûrê Kurdistanê de, rola navçîkar lîstiye. Loma jî dema ku piştî van gotûbêjan êrîşên leşkerî birin ser PKK'ê, gumana wê yekê ket ser Hikûmeta Herêma Kurdistanê ku bi rola "xayînan" rabûbin.

Talabanî ji balyozê Emerîka re gotiye ku dema wî evyek ji Erdogan re gotiye, Erdogan ji Talabanî re gotiye ku ev "xeletiya serokerkanê artêşê" bû. Herwiha Erdogan ji Talabanî re gotiye ku çûna Taner ji bo Başûrê Kurdistanê bi teklîfa Erdogan bi xwe bûye.

Dîsa li gor belgenameyê, Talabanî di çarçoveya serdana xwe ya fermî de, civîneke "nehênî" bi Taner re jî saz kiriye, ku tê de "Taner behsa xwesteka hevdîtinek din bi serkirdeyên PKK'ê li çiyê kiriye." Lê Talabanî dûre ji balyozê Emerîka li Bexdayê re gotiye, ku wî ji Taner re gotiye ew ne emîn e ku serokatiya PKK'ê bi civîneke bi vî rengî razî bibin, "ji tirsa ku cihê mabûna wan li çiyayan eşkere bibe û sîxurî li ser wan bê kirin." Li ser vê yekê Taner pêşniyaz kiriye ku eger wisa nebe, ew dikare bi serkirdeyên Ewrûpa yên PKK'ê re bicive.

Belgename dide xuyakirin ku Talabanî ji Abdulla Gul bihîstiye ku ew piştgiriya derxistina lêborîneke giştî ji bo PKK'yiyan dike, lê herwiha gotiye jî: "Xelkê din bi awayekî din li vê meseleyê dinerin." Herwisa Talabanî wisa ji Gul fam kiriye ku ew piştgiriya derxistina efûyekê netewî dike. Û Erdogan jî ji bo hejmareke çekdarên PKK'ê piştgiriya derxistina efûyekê dike û tekez jî dike ku "hemû gavên siyasî li ser maseyê ne, bi şertê ku PKK çekan deyne."

# Jugendamtê zarok ji malbatê veqetand

**Bochum (Rûdaw) -** Li bajarê Almanya Bochumê, Jugendamt a wî bajarî zarokekî Kurd ê yek salî ji malbata wî stand û da malbateke alman. Malbata Yalçin ku ji Tekmana Erziromê ye, ragihand ku ew bi vê bûyerê gelek êşiyane û hewld didin xwe ku zaroka xwe dîsa bînin mala xwe.

Kerem Yalçin ê yek salî ku hîna nû rabûbû ser lingan, roja 23'ê Kanûna sala borî li malê dema dileyîst serpiştî ket erdê û jixwe çû. Bavê wî Faysal û diya wî Filiz Yalçin di heman demê de zarokên xwe rakirin nexweşxaneyê. Wek bijîjk ji wan re dibêjin xwîn herikiye mêjiyê zarok û wê demeke dirêj di komayê de bimîne. Faysal Yalçin ê ku bavê 4 zarokan e tevî hevjîna xwe bi roj û şevan li nexweşxaneyê li ber serê Keremê yek salî disekinin. Kerem roj bi roj tê ser hişê xwe, lê nikare milê xwe yê rastê bilivîne. Paşê li ser pêşniyara bijîjkan malbata Yalçin zarokên xwe dibin Kûrê û zarok di nava du hefteyan da radibe ser xwe û milê wî jî weke berê baş dibe.

Roja 26'ê Çileya 2011'an malbata Yalçin dixwaze Kerem ji Kûrê derxîne û bibe malê, lê Jugendamta Bochumê bangê wan dike û dixwaze li ser rewşa zarok ji wan agahî bistîne. Faysal Yalçin bûyerê wiha bilêv dike: "Ez û hevjîna xwe em çûn bi Frau Sonnenschein re axivîn. Wê jî ji me re got ku bijîjkê Kûrê derbarê bûyera Kerem de raporek amade kiriye û li gor wê raporê zarok neketiye erdê, lê rastî lêdanê hatiye." Yalçin dide zanîn ku tiştek wiha ne mimkûn e û wiha pêde çû: "Wekî din sê zarokên min hene. Heta niha ne ji aliyê min, ne jî ji aliyê dayik wan ve ti lêdan û tûndî nehatiye kirin, lê em bi rapora bijîjk şok bûn."

Di vê navberê de, dema ku Faysal û Filiz Yalçin li Jugendamt a Bochumê bi Sonnenschein re diaxivin, polîs jî zarok ji cihê Kûrê digire û dibe. Faysal Yalçin wiha dom kir: "Kerem birine dane malbateke alman. Ji me re jî dibêjin hûn dikarin carê yek saet, di heftê de du caran werin wî bibînin. Ev bû du caran em wî dibînin, lê em zêde nikarin wiha berdewam bikin. Em zarokên xwe dixwazin."



Filiz Yalçin a ku ji ber zarokê xwe gelekî xemgîn e got ku dema zarok ew dîtiye xwestiyê wê himbêz bike û got: "Zarokek wiha biçûk çawa dikarin ji dayikê biqetînin. Jinika alman dibêje dema hûn diçin Kerem digirî û dibêje mama."

Dema me nûçe amade dikir, ligel hemû ceribandina, me nekarîbû xwe bigihînin Jugendamt a Bochumê ji ber ku bersiva telefonan nedidan û nedixwestin biaxivin.

**Rûdaw**
Rojnameyeke siyasî û heftane

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Serokê Civata Rêvebir**
Nûredîn Weysî
nuradinwaisi@rudaw.net

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemmed Orhan
kaniyajiyane@hotmail.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

## Gelê Misrê bû yek deng: Bila Mubarek here!

*Pêla girseya gelê Ereb ku li Tûnisê destpêkir û dîktatorê vî welatî ji desthilatdariyê dûr xist, bêyê ku bisekine giha Misrê û desthilatdariya Mubarek a 32 salan hejand. Li Qahîrê û bajarên din bi milyonan kes daketin qadan û heta roja înê wext dan Mubarek ku dev ji desthilatdariyê berde. Li gorî NY'ê di serhildanan de li dora 300 kesan jiyana xwe ji dest dane. Mûxalefetê roja sêşemê çaverê dikir ku 1 milyon kes li Qada Tahrîrê bicivîne, lê li gorî televizyona EL Cezîreyê girseya gel ji 2 milyonan zêdetir bû.*
*Digel ku li her derê meşa kolanan ji aliyê hikûmetê ve hatibû qedexekirin jî, her der tijî însan bûbû. Girseya ku kom bû heta roja înê dem da Mubarek. Serokên hîzb û rêxistinên muxalîf jî li ser çûyîna Mubarek heman helwestê nîşan didin. Pêşniyara Birayên Misilman jî ew e ku serokê Dadgeha Bingehîn derbasî şûna Mubarek bibe û heta demekê serokatiyê ji Misrê re bike. Di vê navberê de televîzyona Al-Arabiya ragihand ku wê serokdewletê Misirê Husnu Mubarek tevlê hilbijartina li pêşiya me nebe.*



Li Bakûrê Kurdistanê di navbera BDP û AKP'ê de reqabeta hilbijartinê dest pê kir jî

# BDP: Em ji 40 kursiyan kêmtir bi dest naxin

▶- Şîrketa Gur: Heya diçe hêjmara dengên BDP'ê zêdetir dibin.

▶Şîrketa Gana: Ji derveyî Rihayê wê herdu partî hêjmara kûrsiyên xwe li bajarên Kurdan biparêzin

**Hêmin Xoşnaw**

Hêj zêdetirî 4 mehan ji hilbijartinên Parlamentoya Tirkiyê re maye û biryare di 11'ê Hezîrana îsal de bê lidarxistin. Lê her ji niha ve li Bakûrê Kurdistanê reqabeta hilbijartinê di navbera AKP û BDP'ê de dest pê kiriye. Di hilbijartinên Tîrmeha 2007'an de BDP ji ber bilindiya rêjeya benda hilbijartinê ya ji sedî 10, bi namzetên serbixwe beşdarî hilbijartinên parlamentoyê bû û 21 kûrsê bi dest xistibûn. Lê AKP bi awayê lîste beşdar bû û li bajarên Bakûrê Kurdistanê 75 kursî bi dest xist.

Herçendî hilbijartina serok û encûmenên şaredariyan ji bo hilbijartina parlamentoyê nabe pêwerek, ji ber cûdabûna sîstema herdu hilbijartinan, BDP'ê di hilbijartinên şaredariyan a 2009'an de serkeftinek mezin li Bakûrê Kurdistanê bi dest anî û hêjmara şaredariyên xwe ji 51 kir 99 şaredarî.

Rojnameyên Tirkiyê hîn ji niha ve li bajarê Amed û çend bajarên din ên Bakûrê Kurdistanê navê hinek kesan belav kirine ku qaşo ew ji bo hilbijartina bê berendamên AKP'ê ne. Lê AKP'ê ev yek li Parlamentoya Tirkiyê red kir. Di heman demê de hinek rojnameyên Tirkiyê li ser zimanê berpirsên BDP'ê ev nûçe wek hewlek ji bo veşartina rastiyên AKP'ê li Bakûrê Kurdistanê binav kirin.

Li gor zanyariyan BDP hewl dide ku hinek ji berendamên wan endamên PKK'ê bin ku ew jî niha li girtîgehên Tirkiyê ne û armanca berendambûna wan jî azadkirina wan e. Li ser vê yekê rojnamevanê Rojnameya Turkiye Adem Demir dibêje: "Hewldanek bi vî awayî wê bertekek xirab li ser rêjeya dengdarên BDP'ê çêke. Ji ber alîgirên vê partiyê di wê baweriyê de ne ku ew berendam di aliyê karên siyasî û parlamentoyî de bê ezmûn in." Lê parlamentera BDP'ê û Seroka Komîsyona Hilbijartinan a vê partiyê Pervîn Buldan derbarê navê bernamzetên partiya xwe de ji Rûdawê re got: "Hêj lîsta me temam nebûye. Lê em ê hemû aliyan piştrast bikin ku bernamzetên me wê namzetên ji carên berî zêdetir kêrhatî û lêhatî bin." Buldan derbarê gotinên ku dibêjin wê hinek girtiyên PKK'ê bikin bernamzet jî got: "Ev gotin ji rastiyê dûr in."

### CHP jî wê hewl bide ku Kurdan bikşîne aliyê xwe

Di hilbijartinên parlamentoyê yên 2007'an li Bakûrê Kurdistanê de reqabeta ciddî tenê di navbera BDP û AKP'ê de hebû. Di hilbijartinên şaredariyê yên 2009'an de jî heman tablo dubare bû. Ji ber vê tê texmînkirin ku heman tişt di hilbijartina Hezîrana bê de jî dubare bibe. Niha herdu partî dibêjin wê li Bakûrê Kurdistanê hêjmarek zêdetir a kûrsiyan bi dest bînin. Lê Partiya Komara Gel (CHP) jî, bi taybet jî piştî ku Kemal Kiliçdaroglu bû serokê vê partiyê û destnîşankirina Sezgîn Tanrikulu ya ji bo alîkarê serokê giştî û - ku herdu jî bi eslê xwe Kurd in - dixwazin dengdêrên Kurd bikşînin aliyê xwe.

Rêveberê şîrketa GUR a ji bo anketan, Adil Gur tekez li ser wê yekê dike ku tenê BDP û AKP wê li ser bidestxistina dengên Kurdan di nava reqabetê de bin, lê bi şertê ku "ti gûhertinek û bi taybet jî di warê hevpeymaniya partiyan de çênebe." Lê rêvebirê şîrketa Gana, Mistefa Şen, di wê baweriyê de ye ku "eger heta wê demê rêjeya dengdarên BDP'ê hinekê zêde jî bibe, lê wê herdu partî bi giştî rêjeya xwe biparêzin. Lê eger partiyek wekî Hîzbûllah bi bernamzetên serbixwe beşdar bibe, wê demê wê ev rêjeya dengên herdu partiyan jî kêm bike." Pervîn Buldan bi dijwarî bersiva lêkdanên Şen dide û tekezê li ser wê yekê dike ku ti bandora Hîzbûllahê li ser dengderên Kurd nîne: "Bi baweriya me Hîzbûllah beşdar bibe yan ne, ti bandorê li ser hêjmara dengên me çênake."

**Hê lîsteya me temam nebûye; lê namzetên me wê kêrhatî bin.**


Parl. BDP'ê Pervin Buldan

**Li gor xizmeta ku me kiriye em ê kursiyên xwe zêdetir bikin**


Parl. AKP'ê Cemal Taşar

Herçendî serokê Partiya Maf û Azadiyan (HAK-PAR) Bayram Bozyel di hevpeyvîneka ligel Rûdawê de ragihandibû ku ew di hilbijartina bê de li benda wê yekê ne ku li Bakûrê Kurdistanê 1 milyon deng bi dest bînin, lê çavdêr dibêjin ev partî wê li Bakûrê Kurdistanê ne hevrikeyek diyar be û wan dengên behskirî bi dest naxe.

### Ewrûpa benda ji sedî 10 astengek li pêşiya demokrasiyê dibîne

Ewrûpa jî benda hilbijartinê ya ji sedî 10 li Tirkiyê wek astengek li pêşiya demokrasiyê dibîne û daxwaza rakirina wê dike. Ji ber benda ji sedî 10, gelek dengên partiyên Kurdan ên Bakurê Kurdistanê vale diçin. Herçendî di hilbijartina borî de DTP (piştî girtina wê BDP cihê wê girt) 21 kûrsî bi dest anî, lê encamên dawiyê nîşan dan ku hejmarek zêde ya dengên Kurdan vale çûne û AKP'ê sûd jê wergirtiye.

### AKP: Em ê hêjmarek zêdetir bi dest bixin

Derbarê wan kûrsiyên ku tên texmînkirin BDP bi dest bîne, Seroka Komîsyona Hilbijartinan a wê partiyê Pervîn Bûldan ji Rûdawê re daxuyand: "Em di vê hilbijartinê de ji 40 kursiyan kêmtir bi dest nayînin. Tenê ji 10 kursiyên li Amedê, me çavê xwe biriye 6 kursiyan. Hinek berpirsên din ên BDP'ê jî dibêjin, em ê 45 kursiyan bi dest bînin. Parlamenterê AKP'ê yê Bidlîsê Cemal Taşar jî di wê baweriyê de ye, eger rêjeya dengên partiya wî zêdetir nebe kêmtir nabin: "Li gor wan xizmetên ku AKP'ê pêşkêş kiriye, herwiha hewldanên ji bo çespandina mafên mirovan û encamên vebûna demokratîk, pêwîst dike ku em kûrsiyên zêdetir bi dest bînin."

Serokê navenda anketan a Gur, Adil Gur, diyar dike ku hemû anket nîşan dikin ku "Heya diçe hêjmara dengên BDP'ê zêdetir dibin." Di heman demê de, bi baweriya wî, BDP vê carê bi piştgirêdana bi ezmûnên hilbijartina borî û cara yekem bi namzetên serbixwe beşdar bûyî, dikare hêjmara kursiyên xwe zêdetir bike: "Heya diçe dengên BDP'ê zêdetir dibin. Lê bi sedema benda hilbijartinê, dibe ku carek din hêjmarek zêde ya dengên wan ji bo AKP'ê biçin. Dibe ku BDP ji 30 kûrsiyan kêmtir bi dest neyîne."

Lê Mistefa Şen, ji şîrketa Gana, di wê baweriyê de ye ku ji derveyî Rihayê (Urfa) wê herdu partî hêjmara kûrsiyên xwe li bajarên Kurdan biparêzin: "Reqabeta navbera herdu partiyan a li Riha, bi rêya serokê şaredariya wî bajarî Ahmet Eşref Fakibaba tê yekalîkirin. Ji ber ku ew serbixwe ye û alîgirên wî zêde ne. Dengê xwe bide kîjan partiyê, hêza teraziyê wê bi aliyê wê partiyê de giran bibe. Lê hêj wî biryara xwe nedaye."

## Butçeya cîbicîkirina Maddeya 140: 108 milyon Euro e

*Hewlêr (Rûdaw) -* *Cîgira Serokê Komîteya Bilind a Cîbicîkirina Maddeya 140 Nermîn Osman ragihand ku butçeya ku ji bo karê komîteyê di sala 2011'an de hatiye veqetandin, wek par 172 milyar Dînarên Îraqî (108 milyon Euro) ne û got: "Hinek parlamenteran xwestin bûdçe bê zêdekirin, lê heta niha bersiva vê daxwaza wan nehatiye dayîn."*

*Nermîn Osman diyar kir ku butçeya Komîteya Bilind a Cîbicîkirina Maddeya 140'ê rasterast ji Ofîsa Serokwezîrê Îraqê tê misogerkirin, loma di proje-yasaya butçeya sala 2011'an de wek beşekî serbixwe nehatiye binavkirin: "Her sal jî wisa bû û beşek bi navê 140 nehatibû binavkirin. Butçeya vê komîteyê li ser Ofîsa Serokwezîr e. Di butçeya vê ofîsê de beşek bi navê Maddeya 140 heye. Navê vê ofîsê nakeve nav hurdekariyên butçeyê. Lê pere hatine veqetandin û îsal jî heman pereyên par in, ku 172 milyar dînarên îraqî ne."*


Wêne: Rûdaw

# Şimika ku li dev û rûyê Saddam hat xistin, niha li Helebce ye

### Ebu Tehsîn şimika 'pêlava' xwe nefirot Kiwêtê û diyarî Helebce kir

Ebu Tehsîn roja 9'ê Nîsana 2003'an li Bexda wêneyê Saddam Huseyîn girtibû destê xwe û bi dilekî şewitî pêlava xwe li dev û rûyê wî dida. Ebu Tehsîn wê pêlavê li hember hezaran Dolaran bifiroşa Kiwêtiyan, lê bê beramber da xelkê Helebce û niha li monumenta wî bajarî ye.

**Helebçe (Rûdaw) –** Piştî temaşekirina wêneyên karesata 16' Adara 1988'an ku di monumenta Helebce de di çarçoveyê da hatine danîn, di hundirê şûşeyeke dirêj de şimika Ebu Tehsîn a qahwerengî di hundirê sêniyeke şûşe de hatiye danîn. Osman Segirli ku rojnamevanekî Tirk e dema pêlavê dibîne dikene û dibêje: "Ez bûm ku wê rojê wêneyên video yên Ebu Tehsîn li Bexda girtin, hemû kanalên cîhanê ev fîlm ji min kirîn." Wê demê Sagirli ji bo ajansa nûçeyan a IHA kar dikir ku wêneyê Ebu Tehsîn girtin, roja duşema borî ligel hevalekî xwe yê rojnamevan serdana monumenta Helebce kirin. Sagirli raporek li ser hinek kesên ku ji kîmyabarana Helebce filitîne, çêkir.

### Kiwêtiyan 50 hezar Dolar dan Ebu Tehsîn, lê wî belaş da Monûmenta Helebce

Berpirsê Monûmenta Helebce, Serxêl Xefar got: "Ebu Tehsîn bi xwe pêlava xwe pêşkêşî monumentê kir, di panelekê de ku Partiya Komunist li Helebce sazkiribû. Ebu Tehsîn jî vexwendibûn vê semînerê û tê de biryara diyarîkirina pêlava xwe ji bo monumenta Helebce da."

Serxêl dibêje Kiwêtiyan pereyên zêde dane Ebu Tehsîn li himber firotina pêlava wî, lê navbirî red kiriye: "Li gor gotinên Ebu Tehsîn bi xwe, Kiwêtiyan 50 hezar Dolar wek heqê vê şimikê dane."

Niha îmkan heye ku monumenta Helebce bibe cihê komkirina kelûpelên ku pêwîst e li her muzexaneyeke niştîmanî hebin. Ji bilî wêneyên fotografîk ên qurbaniyên karesata kîmyabaranê, li odeya mirinê ku beşekî monumentê pêk tîne, çîroka kolanên Helebce di roja 16'ê Adara 1988'an de bi peykeran hatiye darijtin, mêrek bi bêrê û jinek li ser sêla çêkirina nan û li kêleka wan çend zarokên mirî, tevzînokan dixin laşên kesên ku derbasî wê odeya tarî û dirêj dibin.

### Du kamerayên ku wêneyên karesatê girtibûn vegerandine Helebce

Di beşekî din ê monumentê de, du kamerayên ku rojnamevanan roja karesatê wêneyên qurbaniyan bi wan girtine, hatine hilgirtin. Ev kamera yek a rojnamevanê Kurd ê ji Bakurê Kurdistanê, Ramezan Ozturk û rojnamevanê Swêdî, Stevan Herten in, xwediyên kamerayan kamerayên xwe pêşkêşî monumentê kirine. Serxêl Xefar dide zanîn ku rojnamevanê Îranî, Ehmed Natiqî yê ku jimara herî zêda ya wêneyên karesatê girtibûn, di demeke nêzîk de kameraya xwe pêşkêşî monumentê dike.

### Qelemê ku îmzeya darvekirina Elî Kîmyayî pê hat kirin li Helebce ye

Herî girîng jî pênûsa ku darvekirina Elî Kîmyayî pê hat îmzekirin, niha li Helebce hatiye hilgirtin. Elî Kîmyayî tawanbarê sereke yê karesatê ye û ji ber vê tawanê cezayê îdamê li ser hat sepandin û xelkê Helebce roja mirina wî aheng girêdan.

Monumenta Helebce di sala 2006'an de ket ber êrîşa ciwanên hêrsbûyî yên Helebce û agir berdaê. Serxêl dibêje ku di dahatû de ew ê beşên arşîv û belgeyan tê de vekin.

Wêne: Rûdaw

**Di Monûmente Helebcê de gelek aletên xwedî çîrokên taybet cîh digrin: Şimika Ebu Tehsîn ku roja 9'ê Nîsana 2003'an li dev û rûyê wêneyê Saddam xistibû; kameraya wênekêşê Kurd Ramazan Ozturk û Stevan Herten; Qelema ku pê biryara darvekirina Elî Kîmyevî hatiye îmzekirin.**

# Serjimêrî: Sala borî li Sûriyê 61 tawanên namûsê pêkhatin

▶Bajarê Helebê yekem e

▶Li Heseke di 2010'an de 5 tawanên namûsê hebûn

▶Narîn Umer: kuştinên namûsê li Cezîrê nebûne diyarde

▶Yehya Ewes: 3 tawanên Heseke di malbatên Kurd de hatin kirin


Li Bakur, Başûr, Rojavayê Kurdistanê û li Ewrûpa bi dehan keçên Kurd 'ji bo namûsê' hatine kuştin

**Hêmin Xoşnaw**
**Besam Mistefa**

Piştî ji aliyê parêzvanên mafên jinan li Sûriyê kampanyayên mezin hatin kirin, Serokkomarê Sûriyê Beşar Esad biryara jimare 1 ya sala 2011'an derxist û tê de cezayê kiryarên kuştinên namûsê ji 2 salan kir 7 sal zindan. Ev hewldaneke ji bo kêmkirina tawanên namûsê ku li Sûriyê zêde bûne. Çalakvaneke Kurd dibêje: "Tawanên namûsê li navçeyên Kurdnişîn li Sûriyê nebûne diyarde." Nivîskarekî Ereb ê Sûriyê jî ragehand: "Li gor sala 2007'an, di 2010'an de jimara kuştinên namûsê du qatan zêde bûye."

Li Sûriyê bi giştî û navçeyên Kurdî jî di nav de, kuştina jinan li ser namûsê berevajî welatên derdorê, nemaze Iraq, hêj nebûye diyarde. Lê li gor kovara Sera ya elektronîk ku serjimêriyeke tawanên kuştina li ser namûsê di sala 2010'an de weşandiye, 61 bûyerên kuştina li ser namûsê hebûn û jimara herî zêde li bajarê Helebê bûye.

Edîtorê Kovara Sera, Yehya Ewes, ji bo Rûdawê ragihand ku jimara kuştinên jinan li ser namûsê di sala 2010an de li gor sala 2007'an ku 37 bûyer bûn, du qatan zêde bûye: "Behaneya kuştina van jinan derketina wan ji kevneşopiyên eşîretî wek mêrkirina ligel kesekî ji derveyî eşîrê, guman ji reftarkirina wan. 10 tawan jî bi hinceta ku van jinan bi îradeya xwe biryara hevseriyê dane, hatine kirin. 14 tawan jî bi hinceta derketina qurbaniyan bê sedem ji malên xwe çêbûne."

### Hejmara fermî ya 2007'an: 38 tawan

Li Sûriyê çêkirina serjimêriyan di hemû waran de qedexe ye û tenê ji aliyê dewletê tên kirin, loma serjimêriya kovara Sera jî dibe sedema nerînên cuda. Yehya Ewes dibêje: "Ti jêdereke fermî ya vê serjimêriyê nîne. Lê me ji malperên înternêtê yên ku guh didin meseleya tawanên namûsê dane hev. Serjimêriya fermî di 2007'an de derket û jimara tawanên namûsê bi 38 hatibû nivîsandin."

Nivîskar û çalakvana Kurd Narîn Umer dibêje baweriya wê bi serjimêriyên tawanên namûsê li Sûriyê nayê, ji ber li gor wê: "Yên fermî jimarên ne rast didin û yên sivîl jî nikarin bi azadî tevbigerin û jimarên rast kom bikin." Narîn behsa serjimêriya kovara Sera jî dike û wiha pêde diçe: "Ew bêtir texmîn in, lê dîsa jî 61 bûyer li gor dewletên derdorê ne jimareke ewqasî zêde û tirsnak e. Ji ber gelek sedemên cuda çanda tundûtûjiyê cihê xwe di nava civaka Sûriyê bi giştî û ya Kurdî bi taybetî de negirtiye." Narîn dibêje bandora tevgera Kurdî ya siyasî jî di vî warî de hebû: "Tevgera Kurdî, nemaze ya Çepgir, roleke erênî di warê pêşxistina civaka Kurd li Sûriyê û azadkirina jina Kurd de leyîst."

**Bûyer li gor bajaran:**
- Heleb 17, Îdleb 13, Hums 6, Hesekê 5, Gundên Şamê 4, Hema 4, Laziqiya 4, Reqa 2, Swêdaa 2, Deraa 2 û Şam 2.
- 37 tawan ji aliyê birayên qurbaniyan hatine kirin, 7 ji aliyê hevserên wan, 5 ji aliyê bavên wan, 4 ji aliyê mamên wan, 3 ji aliyê kesûkarên wan, 2 ji aliyê dayikên wan, 2 tawan dehifdanê ji bo xwekuştinê û ji van tawanan 17 bi çekên otomatîkî hatine kirin, 17 bi kêran û 12 xeniqandin.

### Jinên kuştî Kurd in, an na?

Derbarê pirsiyara Rûdawê li ser rêjeya tawanên namûsê li navçeyên Kurdnişîn li Sûriyê, Ewes got ku ew serjimêriyên xwe ne li gor bingehên olî, mezhebî yan netewî çêdikin û domand: "Kurd ne li devereke taybet li Sûriyê hene, rast e piraniya wan li bakur in, lê li Heleb û Şamê jî hene. Herwiha ev mijareke hestiyar û nazik e, loma gelek tawan diqewimin, lê medya behsa wan nake. Li Helebê em nizanin jinên hatine kuştin Kurd in, an na." Narîn Umer ji bo Rûdawê axifî û ragehand ku her çiqasî kuştinên li ser namûsê li tevahiya navçeya Rojhilata Navîn hene û zêde dibin, lê hêj li navçeyên Kurdnişîn li Sûriyê nebûye diyardeyeke berbiçav û got: "Rast e bûyerên kuştina li ser namûsê hene û kiryarên tundûtûjiyê jî dijî jinan tên kirin, lê em qet nikarin bêjin bûye diyarde û cihê metirsiyê."

Navbirî bal kişand ser wê yekê ku li navçeyên Kurdnişîn ligel Kurdan, Ereb, Turkmen, Aşûrî û Mesîhî jî dijîn û carnan pirsgirêk di vî warî de derdikevin: "Carnan revandin, hezkirin û têkiliyên di navbera kesên ji du ol û neteweyên cuda de dibin sedemên kuştinê." Ewes jî gotina Narînê piştrast dike û dibêje: "Tevgera Kurdî ya çep bandoreke erênî li ser jin û civaka Kurd kir, lê hêj li bajarok û nemaze gundan çanda eşîretî heye. Ji van 5 tawanên ku li Hesekê çêbûn, 3 di malbatên Kurdî de hatine kirin."

### Biryara nû wê roleke erênî bilîze

Narîn Umer ku çend pirtûk bi zimanê Kurdî û Erebî nivîsandine, dibêje biryara nû ya Serokkomarê Sûriyê wê roleke erênî di warê kêmtirkirina tawanên namûsê de bilîze, lê dibêje: "Pêwîst bû yasaya kevin bi carekê ji holê bihata hilandin, lê mixabin tenê hat sererastkirin. Herdem Hikûmeta Sûriyê nîv-çareseriyan pêşkêş dike, lê meseleyan di hemû waran de bi awayekî seranserî û bingehînî çareser nake. Nizanim mebesta wan ji vê yekê çi ye, lê dîsa jî biryara jimare 1 wê roleke baş bilîze. Daxwaz ji Hikûmeta Sûriyê dikim hemû biryarên dijî Kurdan, ku li gor gotina Esad `beşekî serekî ji tevna civaka Sûriyê ne` rake, ji ber ger sitem ser civaka Kurd bi giştî rabû, jina Kurd jî wê hê azadtir bibe û mafên wê neyên xwarin. Wek mînak, dayikên Kurd ên bênasname gelek dijwariyan dikişînin."

> Derketina ji kevneşopiya eşîretî dibe sedemê kuştinê


Yehya Ewes

> Tevgera Kurd di azadkirina jinan de rolek erênî leyîst


Narîn Umer

---

**Ahmet Dere**

## Doza KCK'ê



Ev du sal in rojeva dadgeha tirk ya Amedê bi doza KCK'ê ve tije ye. Ji ber ku ev doz siyasî ye û herwiha naveroka wê vala ye, dozger jî nizanin çawa tevbigerin. Tenê ew dizanin ku divê heman doz bidome, lê heta kengê ?

Ji ber nêzîkatiya hikûmeta AKP'ê û herwiha ya muxalefetê, bi taybetî ya MHP'ê, dozgerên dadgeha Amedê neçar in ku serbixwe tevnegerin. Ez bawer im hemû dozgerên li Amedê baş dizanin ku ti bingeheke dadî tine ku ew rayedarên BDP'ê di zîndanê de girtî bihêlin.

Weke tê zanîn, li Silivriyê doza Ergenekonê didome, dozgerên wê derê jî nikarin serbixwe tevbigerin û neçar in li gorî helwesta AKP'ê biryaran bigirin. Ji bo helwesta derdorên alîgirên Ergenekonê siviktir bibe, operasyona KCK'ê hate destpê kirin û doza wê jî weke tolhildan tê bikar anîn. Kî çi dibêje bila bibêje, ez dibêjim qedera her du dozan bihev ve girêdayî ye. Di vê salê de, bi taybetî piştî hilbijartinan, wê hin encam derbikevin holê.

Ji destpêka dozê vir ve, girtiyên KCK'ê helwesta xwe ya ji bo axiftina bi kurdî didin pêş. Di vî warî de helwesta girtiyên KCK'ê û zihniyeta Dewleta Tirk di nava şerekî de ne. Ev helwesta girtiyan hewceyê pesindayînê ye û divê were pîrozkirin. Ne ji ber xebatên wan ên siyasî be jî, tenê ji bo vê helwesta wan be jî, pêwîst e gelê Kurd li wan xwedî derbikeve. Lê mixabin, ji derveyî derdorên PKK'ê û BDP'ê, ez zêde hevkariyeke Kurdan nabînim.

Di hefteya borî de girtiyên KCK'ê biryar girtin ku êdî dernekevin pêşberî dozgeran. Helwesteke di cih de ye û divê were dewam kirin. Bi vê helwesta girtiyên KCK'ê maskeyê durû yê AKP'ê jî ketiye erdê. Digel kêmasiyên xebatên lobî û dîplomatîk yên BDP'ê û rêxistinên din ên Kurdên Bakur, li Ewrûpayê jî, bi taybetî rayedarên saziyên pêwendîdar ên Yekîtiya Ewrûpayê, êdî nema baweriya xwe bi gotinên «Vekirina Demokratîk» yên hikûmeta AKP'ê bînin.

Bi kurtahî, ji vê merhelê bi şûn de, êdî doza KCK'ê bûye ya hemû Kurdên Bakur. Lewre divê hemû Kurd, herweha ên Başûr, Rojhilat û Başûrê Rojava jî, piştgiriya helwesta girtiyên KCK'ê bikin. Ev ne tenê doza BDP'ê, an jî ya PKK'ê ye, bûye ya hemû Kurdan.

Kurd Kampa Tedigham bernadin:

# “Em paşde nazivirin, yan serkeftin yan mirin!"

Gelek ji wan poşman in ku ji Kurdistanê derketine. Ji ber ku sar e û hêvî tuneye. Gelo dixwazin vegerin? “Tiştê wiha nabe!“ Armanca wan ciwanan ew e ku derbasê aliyê din bibin, ango Brîtanyayê...


Wêne: Rûdaw


Wêne: Rûdaw

**Fransa (Rûdaw) -** Berêvareke sar e çar hevkarên Rûdawê li kolanên Dankikh li pey xaniyekî wêran ku bi naylonê hatiye nuxumandin an jimareke mirovan digere ku ji cil û dev û rûyên xwe bên naskirin. Ev ew nîşan in ku berê wek "agahî dîtin" hatine wergirtin bo gihiştina bi vê jimara ciwanên Kurd ên ku li vir xwe bo qonaxa dawî ya koça xwe ya di nav parzemînan de amade kirine. Wergêrê me yê Fransî, Ergîn Opengîn diçe qahwexaneyekê û li wir navê wê parkê dibêje ku penaber lê ne û navê wê Tedigham e. Ew ciwanên li Tedigham di nav qeşayê de di bin naylonan de dijîn, li nêzîkî deryayê. Lê dû re fam dikin ku ev têr nake, ji ber nêzîkî nîv demjimêrê li dora daristanê dizîvirin, bêyî ku şopa Kurdekî jî bibînin.

Piştî çend çirkeyan li çar-rêyeke nêzîkî daristanê ku li derveyî bajar e, 5 ciwanên cilreş dibînin ku xwe bi cilê germ pêçane û bê taqet berbi deşteke tarî diçin. Bi lez berbi aliyê wan diçin û silavekê bi kurdî li wan dikin, ew jî bersivê didin: "Bixêrhatin serçavan birano!" Ev bûn ciwanên ku em li wan digeriyan, loma jî xwe bi wan didin naskirin û daxwaz ji wan dikin me bibin ‘kamp’a xwe, 4 ciwan bêdengî dibin û berê xwe didin yekî da ku baxive. Ew bi navê Sefîn xwe dide naskirin ku xortekî 30 salî ye. Dema nerînên hevalên xwe dibîne, dibêje: "Ser çavan, pir nêzîk e ji vir, werin bidin dû min."

### Birayê mezin kî ye?

Em di rê de ji ciwanekî dipirsin ku Sefîn kî ye? Ew dibêje: "Birayê me yê mezin e." Dû re her bi xwe berdewam dike û dibêje: "Ew yek ji qaçaxçiyan e."

Piştî derbaskirina cadeyeke din, me xwe li pêşber dergehekî hesin ê mezin dît. Ciwanek dibêje "Em gihiştin", em sê cihan dibînin ku wek holikane û serên wan bi naylonê hatiye pêçandin. Li kêleka holikekê agirekî mezin hatiye hilkirin û jimareke zêde ya ciwanên ji 16-30 salî li dora agir kom bûne. Pirîska agir carna dev û rûyê hinek ciwanan bi awayekî ron pêşan dide. Li ser destê çepê yê wî cihê ku koçberên Kurd jê re dibên "kamp" çemekî mend heye ku li wî alî lampên zêde û vêxistî hene û dibe naçeyeke pîşesazî be. Ciwanek bi pêkenîn ji me re dibêje: "Dema koçberekî nû tê vir, em jê re dibêjin ew aliyê avê Dover e, ew jî hawar dike û dibêje: erê çima bi melevaniyê derbas nakin?" Dover yekemîn xala ser sînor e ku dikeve nav xaka Brîtanya û her koçberekî ne yasayî ji Fransa bigihe wir, tê wateya ku gihiştiye Brîtanya.

### Polîs wan bigre normal e, lê kêran lê bide neheqî ye

Di kampa Kurdên koçber de li Dankikh du qaçaxçî serperiştiya karan dikin. Yek jê Sefîn e, xortê em gihandin kampê û yê duyemîn ciwanekî bi navê Kak Î. temenê wî 28 sal dibe, herdu jî wek koçberên ligel wan, xelkên navçeyên Pişder û Bîtwên ên Başûrê Kurdistanê ne.

Kak Î. dema wênegirê Rûdawê dibîne, tê pêşiya wî û dipirse: "Baş e polîs we nagire?" em bersivê didin ku em rojnamevan in û karê polîsan bi me nîne. Dema Sefîn diaxive, yên din bêdeng dibin. "Polîs sibehan saet 7 tên me dibin, bi taybetî yên ku nû gihiştine, polîs wan ligel xwe dibin û 15 rojan wan digrin, pişt re kaxezekê ji wan re çêdikin û dibêjin di hundirê 48 saetan de divê ji Fransa derkevî." Ciwanekî din gotina "birayê mezin" berdewam dike û dibêje: "Berî demekê malbateke Kurd di konekî de bûn, polîsên bajarê Kalê bi kêran li konê wan dan û gelek nemabû kêr li serê zilamê malê bikeve." Sefîn dîsa dibêje: "Girtin asayî ye, lê dirandina çadiran bi kêran ne asayî ye, neheqî ye.. neheqî!."

**Penaberên Kurd ên li ser sînorê Fransa û Brîtanya, ku di nav daristana Dankikh de di bin naylonan de dijîn, ne amade ne wî cihî vala bikin, ji ber ku: "Hevrikiya netewî li vir heye."**

### Çav û rûyê wan dernekeve

Dîmenên ku dikevin ber zooma kameraya Rûdawê ecêb in, ciwan li dora agir kom bûne, yekî 17 salî xwe bi navê Çalak dide naskirin û ji temenê xwe mezintir xuya dike. Çalak hê di destpêkê de bi kameraya Rûdawê dilgiran e û dibêje: "Keko bi kêfa xwe wêneyên me bigrin, lê bila dev û çavê me dernekeve, me ev rê hemû derbas kirine, bila li Brîtanya pirsgirêk ji me re dernekevin." Gelek ji van koçberan di dema hatine Fransa li Yûnanîstan, Îtalya, Fransa û welatên din ên Ewrûpa pencemorên wan tên wergirtin. Ger ev pencemor li Brîtanya eşkere bibe, mafê mabûnê nadin wan û wê wan bişînin welatê ku bo cara yekem pencemorên wan girtine.

### Li benda mîza şofer in

Çalak poşman û bêzar e ku ji Kurdistanê derketiye: "Vir sar e û derketin jî nemaye, hinek caran dixwazim herim welatekî Ewrûpî yê din." Em jê dipirsin: "Çima venagerî Kurdistanê?" Bersivê dide: "Tiştê wiha nabe..." Hevalên li dora wî jî dikenin û dibêjin: "Êdî paşde nayên, yan serkeftin yan mirin!"

Armanca wan ciwanan ew e ku bi serkeftî bigihin wî aliyê din ê Birîtanya, lê wekî bi xwe dibêjin, derketin nemaye û serma jî roj bi roj zêdetir zextan li wan dike. Niha tek hêviya wan koçberan ew e ku şofêrê erebeyek barhilgir otomobîla xwe li kenarê cadeyê rawestîne ji bo destavê, da ku koçber ciyê xwe li ser barê hilgirtî bike. Qedera wan koçberan bi mîza şoferekî ve girêdaye, ji ber vê yekê jî wekî ew bi xwe dibêjin: “Em her tim dûa dikin ku mîzê şofêran li nêzî vê derê bê!”

### Hêviyên derbasbûnê kêm bûne

Pirsgirêk bi siwarbûna barhilgirê ve temam nabe, dema ew otomobîla barhilgir digihe xala kontirolê ya li ser sînor, bi alet û seyan ji aliyê polîsên Fransî û Birîtanî tê kontrolkirin. Ligel vê yekê jî qeçaxçiyê bi navê ‘S’ dibêje: “Rast e hêvî kêm bûne, lê her maye. Eger barhilgir nebe, qeçaxçî çi bike? Bi qeçaxçiyan jî nexweşe ku meydan bê girtin, tu têgihiştî!” Herwiha red dike ku koçber bêyî qeçaxçiyan bixwe bikarin derbaz bibin; “Bêyî qeçaxçiyan kes nikare biçe. Gelek kes bê qeçaxçî çûne û kesê nekariye çi bikin.” Em ji Sefîn dipirsin: “Madem meydan hatiye girtin û kes derbas nabe, hûn çima wê kampê vale nakin?” Ew jî wekî serkirdeyekî leşkerî, bersivê dide; “Em cihê xwe bernadin. Tu têgihiştî ev yek jî heye, ji ber her divê rojekê bê vekirin.” Ew herwiha pêdagiriyê li ser milmilanêya netewî li ser wan kampan dike û dibêje: “Milmilanêya qewmî li ser her cihekî bi vî awayî heye.”

Kurdên diasporayê dîsa civiyan û banga îttifaqê kirin

# “Îttifaq nebe Kurd nikarin bibin hêza siyasî”

▶Siyaseta Bakurê Kurdistanê ketiye pêvajoyeke girîng

▶Siyasetmedar û kesayetên serbixwe bêdeng in.

▶Divê Kurd xwe wek hêzeke siyasî bi Dewleta Tirk bidin qebûlkirin.

▶Îttîfaqek di navbera BDP, HAK-PAR û KADEP’ê de wê dengê Kurdan zêde bike.




Wêne: Malpera Avestakurd

Amadekariya civînê Mahmut Kilinç, Zekî Ozturk, Necdet Buldan, Cuma Yakut û Dr. Fikret Yildiz kirin

**Koln (Rûdaw)-** Hefta borî roja yekşemê li bajarê Almanya Kolnê komeke siyasetmedar û rewşenbîrên Kurd hatin cem hev û derbarê pêvajoya siyasî de helwesta xwe diyar kirin. Yek ji amadekarên vê civînê, kevneparlamenterê DEP’ê Mahmut Kilinç ragihand “Divê Kurd beriya her tiştî di nav hev de îttifaqek çêbikin da ku bibin xwediyê hêzeke siyasî.”

Piştî du mehan Kurdên diasporayê careke din li bajarê Kolnê civiyan û pêvajoya siyasî ya li Bakurê Kurdistanê guftûgo kirin. Rewşenbîr, kesayet û siyasetmedarên ku hejmra wan li dora 30 kesî bûn, li ser pêşveçûnên siyasî rawestiyan, bûyerên balkişandî yên wek darizandina endamên KCK, kampanyaya perwerda zimanê zikmakî, hilbijartina li Tirkiyê ya meha Hezîranê û ya serokkomariyê, gotûbêj kirin. Di destpêka civînê de Mahmut Kilinç daxuyand ku armanca wan ne dijberiya ti kesî ye û got: “Her kî xizmeta gel dike, her kî ji bo azadiya gel têdikoşe divê em ligel wî bin û jê re rêz bigrin.”

### “Siyasetmedarên serbixwe bêdeng in”

Kilinç helwesta hevbeş a ku ji civînê derket ji Rûdawê re nirxand û got, “Niha welat germ e, hem girse li ser piya ne û hem pêşveçûnên siyasî diqewimin. Li hemberî vê dewlet hem dest davêje tedbîrên polîsî û hem jî dadgehên xwe wekî baregehên eskerî bikar tîne û bi cezayên giran sawê dike nav girse û siyaseta Bakurê Kurdistanê.”

Kilinç da zanîn ku hêzên siyasî yên Kurd bi siyaseta xwe hertim pêşwazî li gel dikin, lê kesayet, rewşenbîr û siyasetmedarên serbixwe bêdeng in. Civîna ku wan lidarxistiye jî Kilinç wek dengê kesayetan binav kir û wiha axifî: “Em bangê li ti kes û hêzan nakin. Em daxwaziya makezagoneke nû, efûya giştî, perwerda bi zimanê zikmakî jî nakin. Lê em bang dikin ku divê Kurd bibin xwediyê hêzeke siyasî. Heta em hêzeke siyasî ava nekin, ne Dewleta Tirk me wek aliyek qebûl dike û ne jî guh dide daxwaziyên me.”

Mahmut Kilinç li ser navê komîteya amadekar herwiha balkişand ser hibijartina ku di meha Hezîranê de tê kirin û ji bo serkeftina Kurdan, îttifaqa netewî pêşniyar kir: “Li şûna ku BDP bi partiyekî tirk re hevkariyek siyasî bike, her çiqas bêhêz dibin bila bin, eger di hilbijartinan da bi partiyên kurd re hevkariyek siyasî bike ji gelê Kurd wê dengekî pirtir bigre. Ev ne tenê baweriyek e, mînakên vê hene, di hilbijartinan de carina du partî tîfaqê dikin, lê di encamê de dengekî ji yekbûna dengê herdu partiyan kêmtir bidest dixin. Lê belê hinek tîfaq jî çendin qat zêde distînin.”

### “Divê BDP, HAK-PAR û KADEP îttifaq bikin”

Kilinç di axaftina xwe de ragihand tişta ku Dewleta Tirk ditirsîne û wê bibe mifteya çareseriyê, hevkariya hêzên siyasî yên kurd e. Kilinç axaftina xwe wiha domand: “Li pêşîya me, di hundirê du sê salan da sê hilbijartin dikevin rojeva Tirkiyê. Herwiha amadekariya makezagonak nû heye. Divê em ji hêzbûna siyaseta Bakurê Kurdistanê ya bi nasnameya Kurd paşve gav neavêjin. Divê li Bakurê Kurdistanê armanca sereke, bi nasnameyek Kurdî derketina pêş be. Siyasetek Kurdistanî, partiyekî Kurdistanî û herwiha îtifaqeq Kurdistanî dikare wekî layê Kurd derkeve pêş, di wijdana gel da cihekî fireh bigre. Bi baweriya min divê KCD û BDP, herwiha HAK-PAR û KDP bi stratejiyek siyasî tevbigerin. Bila em ji bîr nekin, encamek wisa wê li ser qedera sîyasî ya parçeyên din jî bandor bike. Lewra, em dizanin ku Bakur di çareserkirina pirsgirêka Kurdistanê da bandorker e.”

Kilinç di dawiyê de daxuyand ku wê di nava meh an jî meh û nîvekê de civînek din a berfireh lidarbixin.

## Li Ewrûpa ji ‘endamê PKK’ê’ re ceza heye

**Wilademir Van Welgenburg**
**Holenda**

Kesê li Almanya û welatên din ên Ewrûpa piştgiriya Partiya Karkerên Kurdistan (PKK)ê bike, dewlet dikare wê kesê bide dadgehê. Dadgeha Bilind a Ewrûpa ya ji bo Mafê Mirovan, roja 27’ê Çileya 2011’an di dadgehkirina Kurdekî de biryarek wiha da.

Li Almanya ji sala 1993’an ve bi awayek yasayî çalakiyên PKK’ê hatine qedexekirin. Çalakvana Kurd Aysel Aydin a ku li bajarê Wuppertal a Almanya dijî, sala 2003’an ji aliyê dadgeha wî bajarî ve bi 1200 Euro pere hatiye cezakirin. Sedemê wê jî, ji ber ku dest bi kampanya komkirina îmzeyan a li dijî biryara qedexekirina çalakiyên PKK’ê yên li Ewrûpa kiribû. Ev yek ji wan bi dehan hewlan e yên ku çalakvanên Kurd li dijî qedexekirinê îmze komkirîn, lê heta niha serkeftî nebûne.

Bi nêrîna Aydin ev ceza li dijî azadiya ramanê ya li Ewrûpa ye, ji ber vê yekê jî daxwaza pêdeçûna li ser vê biryarê kir. Lê Dadgeha Federal a Almanya sala 2004’an ew daxwaz red kir û piştre di sala 2006’an de Dadgeha Destûrê piştgirî da wê redkirinê. Herdu dadgehan jî tekez li ser wê yekê kirin ku endambûna PKK’ê, ji bo endambûna rêxistinek ku li Almanya tawanbare, xwediyê heman tawanê ye.

Dadgeha Bilind a Ewrûpa di biryara xwe ya nû de behsa wê yekê dike ku ew cezayê ji Aydin re hatiye dayîn, ne li dijî azadiya raderbirînê ye. Ji ber ku dadgehên Almanya bi awayek vekirî ji bo Aydin mafê raderbirînê parastine. Li gor biryara dadgehê; “Aydin dikaribû bi awayek din nêrîna xwe diyar bike, ne kû bi komkirina îmze û lidarxistina kampanyayê.”

## Li Brîtanya Kurdan hevdu kuşt

**Manchester (Rûdaw) -** Li nêzî kargeheka li bajarê Manchester a Brîtanya, penaberekî ji Başûrê Kurdistanê Kurdek ji Bakûrê Kurdistanê yê bavê du zarokan kuşt û termê wî li cihê bûyerê hîşt.

Li gor raporteka BBC, tê çaverêkirin ku Hoşyar Bapîrî (31) wê di rojên pêşiya me de bi tometa kuştina Ferat Kesmez (30) bê dadgehkirin. Ferat Kezmez ê ji bajarê Amedê penaberî Brîtanya bûye, li gel hevser û du zarokên xwe li bajarê Manchester jiyan dikir. Kesmez roja 21’ê Çileya 2011’an li pêşiya kargeha ku 8 sale tê de kar dike, hat kuştin. Li gor raporteka bijîjkê dadwer, li ser term cihê kêran hebû û bi taybet jî li ser milê wî.

Piştî ku polîsên wî bajarî dest bi lêkolînê kirin, du kesên gûmanbar hat girtin. Lê piştre tenê Hoşyar di bin kontrola polîsan de dimîne û gûmanbarê din tê azadkirin. Hevsera Ferat a ji eslê xwe Îngilîz, Semantay Kesmez, di wê derbarê de dibêje: “Nikarim bêjim hest bi çi dikim, ji ber Firat yek ji mirovên vê cîhanê yê herî baş bû. Ew kesek bê pirsgirêk û bê kêmasî bû.”

Du zarokên Ferat hene. Kurê wî 8 salî û keça wî jî 6 salî ye. Rêveberê giştî yê wê kargeha ku Kezmez tê de kar dikir, John Raynory, dilgiraniya xwe bi kuştina wî karkerî nîşan da û got: “Hemû kesên li vê kargehê bi wê bûyerê dilgiran in. Ji ber ku Kezmez li gel me kesekî gelek dihat hezkirin bû û ji mêj ve li gel me kar dikir. Me hemûyan rêz didayê.”



Hekîm Sefkan

## Ku mirov ji gotina xwe fêm neke



Guhertina di stranan de gheta radeyekê tê pejirandin. Zagoneke wiha tuneye ku divê hemû stranbêj wek hev bistrên, ji xwe ku wek hev stran, wateya rengên dengan, şîroveya dengderxistinê namîne. Aranje, melodiyan serûbinî hev dike, yanî digherîne, ew jî rewaye û kes nikare bêje çima ev strana min wiha aranje kirine, dîsa bilezkirin, yan jî girankirina ritm, ne guneheke mezin e. Guneh di stranê de di bilêvkirin yan jî di guhertina peyvan de ye.

Caran hinek kes tevaya peyvan diguherine, bi wateyeke din texta stranê radikin û texteke din jê re datînin, ew dibe cihê gotûbêjê, lê eger sedema guhertinê têkeve serê mirov, dikare bê daqurtandin. Incex ku peyv şaş bê gotin, hingê cihê dînbûna mirov e. Min berî niha çend caran li ser vê mijarê nivîsiye, bê çawa "starên" Kurdan peyvan berevajî yan jî çewt bilêvdikin. Tevî ez zanim nexema kesî ye ku stran û ziman li ber linga here, dîsa jî ez ê mijarê bigrim destê xwe.

Di "malperên Kurd" de ziman li bin guhê hev dikeve, kes deng dernaxe, ji xwe nexema xwediyên wan malperan e, ji ber ku armanca wan ne ziman e, armanca wan xerabkirina hinekan û bilindkirina hinekî din e, loma jî ziman nayê bîra wan. Ew zêde bandorê nake, hûnê bêjin çima, ez ê bêjim ku hejmara xwendevanan ji ya "nivîskaran" kêmtir e, loma jî bela wiha berdewam bikin. Lê stran? Kambaxiya herî mezin e, ji ber ku her kes li stranê guhdar dike. Û peyv di stranê de çawa tê xwendin wiha tê ezberkirin.

Di salên 90'an de dema ku nû kurdî li Tirkiyê hinekî serbest bû, rê di studyoyan de nema, yê zane û yê nizane, her kesî berê xwe da strana kurdî. Hîn berhemên me-koma berxwedan yan jî solistên wê-yan jî çend hunermend û stranbêjên Kurd li Ewrûpa belavdibûn, li Tirkiyê wek ku heye, Kurdistan dibû gulistan û berhem derdiket, incex stranbêj yeke/î din bû. Mirov dikarîbû fam bike, rewşa wê demê wiha dixwest, merc gelekî zor bûn, tevî ku hinek kes li ser vê yekê bêrîk germkirin jî, lê ew bi xwe karekî baş bû, her çiqasî stran seqetba jî, lê digîha derdorê. Wê demê kasêtek bi navê SÎDAR kete destê min, min lê guhdarkir, di nava stranên wî de, strana 'Bilbilo' jî hebû ku min ji Diyar re nivîsîbû û wê demê bi nav û deng bû. Ez ê bêjim deh, hûn bêjin bîst caran min ew stran vegerand, lê min nikarîbû fam bikim bê min çi nivîsandiye. Ew bi xwe min wiha nivîsandibû: "şûna lûsê wî" lê min fam nekir Sîdar çi digot, min kaset şikand. Wek wî gelek kesan gotinên bi ecêba ku ne di kurdî de, ne jî di zimanekî din de wateya wan hebû digotin. Ez pir pê aciz dibûm, lê ku peyvên min wiha montajeke xerab dikirin ez dîn dibûm. Dîsa me xwe qanîî dikir ku hîn nû ye, dê bê serrastkirin, lê mixabin.

Buyera Bilbilo, 94-95 bû, ku ne şaş bim. Berî çend rojan, yanî 2011'an de yanî piştî 16 salan vê carê Berdan Mardînî strana 'Ez Xeydî' me ku min ji Delîl Dîlanar re nivîsîbû, got. Bawer kin min fam nekir Mardînî çi dibêje. Destê min li TV negeriya ku ez bişkînim, min girt. Gelo ku Berdan straneke Tirkî şaş di kanaleke Tirkan de bixwîne-ne ku jibîr kiribe yan jî tenê careke-wê çi li ser wî bê gotin?

Ez hîn jî fam nakim mirov ku wateya peyvekê nizanibe çawa mirov dikare bi stranî bêje? Çawa mimikan bikar tîne, çawa wê peyvê dijî? Biborînin, lê li cem min rewşeke wiha ti cudaya wê ji zinayê tune ye, yanî wek ku mirov ji jineke biyanî ku qet ew nedîtibe re bêje ez ji bo te dimrim, yanî derew. Ez dema ku ji texta xwe famnakim, dîndibim.

Înstîtûta Kelepora Kurdî 27 awazên her çar parçeyan tomar kirin

## Rêvebirê înstîtutê, Mezher Xaliqî:

# Ji bo dîtina dengên nemir, em serdana hemû aliyan dikin

▶Em ji gelê Kurd re arşîva keleporî çêdikin.

▶Em dengê stranên nemir wek wan dihêlin.

▶Garantiya mabûna berheman 100 sal heye


Wêne: Rûdaw

Kawe Şêx Ebdulla
Silêmanî

Stranbêjên koçkirî yên Kurd ku beriya dehan salan ji mirine, niha dezgehek stran û awazên wan wek ku nû hatibin gotin, zindî dike. Ev dezgeh Înstîtûta Kelepora Kurdî ye, ku bingeha wê ya sereke li Silêmaniyê ye.

Hunermendê Kurd ê navdar û Rêvebirê Înstîtûta Kelepora Kurdî, Mezher Xaliqî bo Rûdawê got: "Em dezgeheke biçûk in, lê bawerî û hêviya me mezin e. Em ji bo rabirdûya miletekî kar dikin û arşîvekî çêdikin ku berî me ti kes û saziyeke din bi vî rengî nekiriye."

Înstîtûta Kelepora Kurdî di sala 2003'an de hat damezrandin. Bingeheke wê li Duhokê heye û nûnertiyeke wê li Kerkûk û her çar parçeyên Kurdistanê heye, ev dezgeh dixwaze arşîveke kultûrî û keleporî ya devkî ya Kurdistanê "bi hemû kêmjimarên wê yên olî û neteweyî" ku dîroka wan a hevbeş li Kurdistanê heye, çêbike. Wek komkirina kelepora devkî ya rûniştvanên Kurdistanê, parastin û amadekirina wan wek navendeke lêkolînê, vejandina çandî ya gelê Kurdistanê bi mebesta guhastina wê ji bo nifşên bê.

Li Înstîtûta Kelepora Kurdî beşên pirtûkxane, arşîva deng û reng, lêkolîn, çap, belavkirin û beşa berhemanînê jî hene. Di van beşan de 500 pirtûkên cuda ku bi zimanê erebî û biyanî derbarê dîrok û çanda kurdî de hatine nivîsandin, hatine parastin. Di beşa arşîva deng û reng de, awazên stranbêjên ku berî sed salî û heta niha, stran gotine tên amadekirin. Heta niha karên 27 hunermendên her çar parçeyên Kurdistanê ji nû û bi awayekî nûjen hatine tomarkirin.

Xaliqî wiha axivî: "Bo her daneyekê ji van albumên ku di bin navê yadigariyan –bîranînan- de hatine tomarkirin, garantiya mabûna wan a 100 salan heye. Ev karekî pir başe ji bo parastina karên me."

Navbirî dîtin û bidestxistina berhem û jiyannameya hunermendên ku berê stran gotine wek karekî "giran û kedeke mezin" wesif dike. Înstîtûta wan pişta xwe bi kesên ku li her çar parçeyên Kurdistanê hevkariya wê dikin, girêdide: "Da dengên nemirên me bibînin, bo her daneyeke ku hebe serdana hemû aliyekî dikin."

Xaliqî amaje da ku karkirina li ser stran û awazên hunermend têr nake, lê ew didin pey şopa jiyan û wêneyên wan jî: "Em li nasname û jiyana hunermendan jî digerin bo tespîtkirin û dû re tomarkirin û arşîvkirina wan."

Mezher Xaliqî bi xwe gelek hunermendên Kurd ên berê dîtine, lewra jiyannameya wan bi hûrî sererast dike: "Hatibû gotin ku Hesen Zîrek di jiyana xwe de 36 jin anîbûn û hatibû gotin ku Mihemed Şêxo li Lubnanê konserek saz kiriye gava serokê wî welatî amade bibû çûbû, min ev gotin lêkolîn kirin, lê tiştekî wisa nebû."

Navbirî wiha direjî da axaftina xwe: "Armanca me ya sereke komkirin û arşîvkirina berhemên hunermendên bibandor ên muzîka kurdî ye. Em deng û awazên ku dibe ji ber kevinbûna kasêt û sêlikan jinav biçin, kom dikin. Bila gelê me jî rabirdûya hunermendên xwe yên resen jibîr neke. Em dengê stranên nemir wek wan dihêlin û nahêlin di arşîvê de têk biçin. Ev qedirgirtina keda dengên nemir e."

Berhemên Înstîtûtê

Ev berhemên han di çend pakêtan de li ser CD û DVD'an di bin navê 'Yadigariyekan' (Bîranîn) hatine komkirin û ji nûve hatine başkirin û paqijkirin. Tevahiya van karan bi kadroyên Kurd hatine bicihanîn.

Heta niha ev berhem hatine çêkirin: Erdewan Zaxoyî, Tehsîn Taha, Gulbuhar, Mamlê, Kawîs Axa, Ayşeşan, Dengê Hewraman (Dilsoz Kêmneyî), Mihemed Arifê Cizîrî, Mînatorê Folklorê Kurd, Yezîdxan, Hesen Zîrek, gruba Yaqût, Mezher Xaliqî, Festîvala Muzîka Kurdî, Hesen Cizîrî, Elî Merdan, Mela Kerîm, Tahir Tofîq, Mihemed Şêxo, Xudad Elî, Bîranînên Kerkûkê, Miryem Xan, Şemal Sayib, Helebce û Îsmaîl Sabûrî.


Wêne: Rûdaw

**Em dezgeheke biçûk in, lê bawerî û hêviya me mezin e. Em ji bo rabirdûya miletekî kar dikin û arşîvekî çêdikin ku beriya m tu saziyeke din bi vî rengî nekiriye.**



*Hewlêr (Rûdaw) – Stranbêj Ezîz Weysî niha berhemeke nû amade dike ku biryar e di Newrozê de belav bike.*
*Ezîz Weysî ku berî çend mehan albumeke stranan weşand, ji Rûdawê re diyar kir ku niha berhema xwe ya nû amade dike: "Dixwazim di Newroza 2011'an de belav bikim, lê hê min biryar nedaye çend stran bin û min navê CD'ya xwe jî diyar nekiriye." Herwiha navbirî da zanîn ku dixwaze çend stranan bi stîla sîngl tomar û klîp bike û stranekê jî ligel hunermend Heval Îbrahîm tomar û klîp bike.*



# Havîn: Tabloya 'Bi xêr hatin Kurdistanê' ez zêde hestiyar kirim

▶Şemamê weke marşeke me ya netewî tê dîtin.

▶Rojnameyên Tirkan gotin 'sloganên ji bo Ahmet Kaya hatin gotin, ji Havînê re jî hatin gotin'.

▶Li Kurdistanê pêşwaziya xelkê zêde germ e û ji mirov re her dibêjin qurban.

▶Li Hewlêrê xelk ji guhdarkirina stranan hezdike, li cihên din ên cîhanê xelk ji wan têr bûne.

**Rûdaw: Te heta çendê xwendiye?**
**Havîn:** Min li Almanya heta pola 11'an xwendiye.

**Te derbarê mûzîkê de ders û kurs dîtine?**
Min dersên fêrbûna deng û awaz dîtine. Ez hem dixwînim û hem jî dibêjim û ji vê yekê zêdetir min tiştek din nedîtiye, ango min zêde ders nedîtine.

**Albumek te heye.**
Berî du hefteyan albuma min a bi navê 'Unutamadim' (Min ji bîr nekir) derket. Min herwiha klîbek jî çêkiriye û niha tê belavkirin. Albuma min ji 12 stranên kurdî û tirkî pêk tê û stranên govend û şahiyan jî tê de ne. Ez dixwazim li vir 3-4 stranên kurdî tomar bikim, taybet ji bo xelkê Başûrê Kurdistanê.

**Tu zewiciyî yan na?**
Na, hîna ne zewicî me.

**Tu ji bo çi hatî Başûrê Kurdistanê?**
Destpêkê bêrîkirineka min li himberî gelê me hebû, ji ber gelê mirov ji gelên din cudatir e. Ji bo wê yekê hem ji bo dîtina rewşa vê derê, dîtina Hewlêr û hem jî ji bo xweşiyên vê derê hatim. Ez ji aliyê Kanal 4 û Korek TV hatim vexwendin û ez hêvîdar im ku ez dîsa vegerim.

**Dema tu despêkê hatî Başûrê Kurdistanê, çi tiştî bala te kişand?**
Ew tabloya li ser nivîsî 'Hûn bi xêr hatin Kurdistanê' ez gelek hestyar kirim. Mirovên vir gelek cûda ne, ji mirov re dibêjin hûn bi xêr hatin, qurban, heyran. Ango germahiyek cûda heye. Ev tiştek wisa ye ku bala her kesê dikşîne.

**Tu li Tirkiyê beşdarî pêşbirka televizyona Atv bûyî. Gelo beşdariya te çawa bû?**
Navê wê bernameyê 'Türkünü Söyle' (Strana xwe bêje) bû, mamosteyê min ê muzîkê Mustafa Beyazkuş pêşniyar ji bo min kir û min jî şansê xwe ceriband. Di lijneya wê pêşbirkê de mamostayên hêja yên wekî Arif Sag, Belkîs Akkale, Yuksel Ayto û Oktay Kaynarca hebûn. Min perwerdeyek mezin ji wan girt, ji xwe pêşbirkê 7 heftiyan domand û ez 5 heftiyan ser hev yekem bûm. Mixabin heftiya dawî ez bûm duyem, lê dîsa ev ji bo me şanaziye û têra me dike. Min xwest bi rêya vê pêşbirkê hunera xwe nîşan bidim.

**Tu weke keçeke Kurd beşdarî wê pêşbirkê bûyî, yan wek Tirk?**
Ez wek keçeke Kurd beşdar bûm û bi bîrûbaweriyên kurdewarî li wir bûm.

**Te di wê pêşbirkê de strana Şemamê bi kurdî got, reaksyona amadebûyan çawa bû?**
Min ji derhênerê xwe Ahmed re got ez ê her strana "Şemamê" bêjim û wî jî got baş e. Dema min ew stran got, mirovên li wê derê şahî girtin. Ji xwe Şemamê ya me wekî merşekî netewî ye û ketiye xwîna me.

**Te çawa fikra wê yekê kir ku bi kurdî bistirî?**
Wê şevê min bihîst ku wê Îbrahîm Tatlises bê wê derê. Ez fikirîm gelo ji bo wê şevê, strana herî kêrhatî wê kîjan be. Ji Şemamê pêve ti tiştek din nehat fikra min. Min Şemamê gelek bi dilgermî got, lê lîjneya jûriyan reaksyon nîşan da û li cihê 10 dereceyan bidin min, kêm kirin û daxistin 8-9 dereceyan. Heta di rojnameyan de jî derket û gotin; dirûşmên ji bo Ahmet Kaya hatin gotin, ji Havînê re jî hatin gotin. Belê ji ber min bi kurdî stran got. Mixabin ku hîna rewşa Tirkiyê wiha ye. Gelê me jî wekî keçeke Kurd li min xwedî derketin. Her heftê dengê xwe didan min. Ez jî her hefte dibûm yekem. Heftiya ku min strana Şemamê gotî jî, yekem bûm. Bi nêrîna min stran zêde cûda nayê dîtin, çi bi tirkî, kurdî yan jî erebî be. Dema min strana Şemamê got, Tatlises rabû ser piyan û me destê hevdu girt û me bi hev re govend kir û Şemamê got, bi rastî ew hesteke xweş bû.

**Dema min strana Şemamê got, Tatlises rabû ser piyan û me destê hevdu girt û bi hev re govend kir û Şemamê got, bi rastî ew hesteke xweş bû.**

**Çi projeyên we li gel Tatlises hene?**
Niha tiştek wisa nîne, lê hêvîdarim ku em di dahatûyê de tiştekî hevbeş bikin.

**Tu herî zêde ji çi hez dikî û ji çi nefret dikî?**
Herî zêde ji govendgirtin, sohbetkirina li gel mirovan û strangotinê hezdikim. Herwiha ji piştguhxistina kesê xwedî maf nefret dikim, ango mafê yekê xwarin gelek li zora min diçe.

**Gelek xelk ji bo sersalê ji vir diçin Ewrûpa, tu çima hatî Başûrê Kurdistanê?**
Her sersalê, yan ez li Almanya, Awisturya, yan jî li Îsvîçre bûm. Wate ez li xerîbiyê bûm. Vê carê min got ka ez biçim welat û bi awayek xweş dest bi saleke nû bikim.

**Te mêvanperweriya vê derê çawa dît?**
Mêvanperweriya vir li ser xweşikbûnê ye, bi rastî jî tiştek bi qasî mêvanperweriya mirovên rojhilat nîne.

**Tu niha li kuderê û li gel kê jiyan dikî?**
Ez ji Almanya vegeriyame û niha li Stenbolê li gel bapîr û dapîra xwe dimînim.

**Tu naxwazî li Başûrê Kurdistanê bimînî?**
Belê, ez difikirim li vê derê bimînim. Çend projeyên min hene û eger bikevin pratîkê, ez ê li Hewlêr bimînim.

**Berî tu bê vê derê, di xeyala te de ev der çawa bû?**
Hewlêr gelekî xweş e, her kes xwedî erebeya xwe ye. Dema mirov diçe bazarê fikir nake ku ve-gere. Her tişt li vir heye û ez hêvîdarim ku wê gelek baştir bibe. Min li vê derê têbînî kir ku xelk ji guhdarkirina stranan hez dike, ev tişt li her derê nayê dîtin, ji ber ku li gelek cihan, mirov ji stranan û stranbêjan têr bûne, lê li vê derê ne wiha ye, ez sipasiya wan dikim û silavên min ji bo hemû gelê başûrê welatê min hene.

***Hevpeyvîn: Mihemed Tahir***


Wêne: Rûdaw

**Biografî**

Havîn Barim di sala 1993'an de li Almanyayê ji dayik bûye û li wir mezin bûye. Malbata wê ji bajarê Elezîz ê Bakûrê Kurdistanê ye. Havîn di sala 2010'an de beşdarî pêşbirkek a stranan a kanala Atv ya Tirkiyê bû. Di 5 hefteyên pêşî de di rêza yekem de bû û heftiya dawî jî di rêza dûwem de cihê xwe girt. Havîn ji 7 saliya xwe ve stranan dibêje û niha albumeke wê heye.

Cîhgirê Serokê Giştî yê CHP'ê Tanrikulu:

# AKP ji bo azadiyan bê dil e, CHP dibe hêvî

▶Du sedemên girîng hene ku CHP di nav Kurdan de qels bû.

▶CHP ji nasnameya xwe ya sosyal-demokrat jî dûr ket.

▶Divê têkiliyên Kurdan bi dewletê re ji nû ve bên avakirin.

▶Fêrbûna zimanê zikmakî û perwerda bi zimanê zikmakî du mafên mirovan ên sereke ne.

Serokê Berê yê Baroya Amedê, Prz. Sezgin Tanrikulu, demeke berê li ser daxwaziya Serokê Giştî yê wê partiyê, Kemal Kiliçdaroglu, tevlî CHP'ê bû. Tanrikulu di CHP'ê de pêşî wek endamê Meclîsa Partiyê û di dawî de wek Cîhgirê Berpirsyarê Mafê Mirovan û Cîhgirê Serokê Giştî hat hilbijartin. Tevlîbûna Tanrikulu û postên ku wî di vê partiyê de girt ser xwe, di raya giştî ya sosyal-demokratan de ku derbarê pirsgirêka Kurd û pirsgirêkên gerdûnî de guhertinan ji CHP'ê dixwazin, wek gavek gelek girîng hat dîtin.

Tanrikulu siyaseta CHP'ê ya derbarê pirsgirêka Kurd, nêzîkbûna wê ya li Herêma Kurdistanê û wateya guherînên CHP'ê ji Rûdawê re nirxand.

**Rûdaw: Di salên dawî de têkiliya CHP'ê bi Kurdan re qels bû û êdî nikare ji Kurdan dengan wergire. Gelo hûn sedemê vêya bi çi ve girêdidin?**

**Sezgin Tanrikulu:** Du sedemên girîng hene: Politikaya ku hat meşandin sedemê yekem û herî girîng e. CHP ji ber siyaseta xwe ya 15 salên dawî ne tenê xwe ji Kurdan dûr xist, herwiha xwe ji bi hezaran kesayetên sosyal-demokratan, sendikayan û aliyên karker û kedkar jî dûr xistin. Encamên vê siyasetê jî rasterast di hilbijartinan de hat dîtin. Sedemê duyem jî ew e ku ji ber vê siyasetê Kurdan rêya xwe ji CHP'ê veqetandin û wek BDP ya îro di bin baskê partiyeke din de siyaseta xwe dest pê kirin. Wek tê zanîn HEP û partiyên din piştî ku siyasetmedarên Kurd ji CHP'ê hatin dûrxistin, ketin qada siyasetê. Di dawî de dengên ku ji CHP û partiyên sosyal-demokrat ên nêzikê CHP'ê re dihatin, berê xwe dan van partiyan. Di 8 salên dawî de jî gavên demokratîk ku desthilatdariya AKP'ê di çarçoveya tevlîbûna Yekitiya Ewrûpayê de pêkanî, di nava gelê herêmê de wek gavên erênî hatin dîtin, sempatiya gel ji AKP'ê re zêde bû û AKP'ê gelek dengên CHP'ê wergirtin. Lê ligel hêza xwe ya xurt a parlamentoyê û derfetên ku YE dide wan, AKP di avêtina gavên demokratîk û azadiyan de niha bê dil e; ev jî di raya giştî ya herêmê de bû sedemê şikestina hêviyan û lêgerîna siyaseteke nû. CHP dixwaze vê qelsbûnê bi siyaseta sosyal-demokrasiyê dîsa ji orteyê rake.

**Siyaseta ku CHP'ê di pirsgirêka Kurd de dimeşand, gelo bi zanetî bû?**

Ez di wan salan de ne siyasetmedar bûm. Wek çavdêrekî ku ji derve binêre, dikarim bêjim ku siyaseta CHP'ê ya wê demê bi zanetî wiha hat meşandin, da ku bibin xwediyê hêzekî.

**Baş e, CHP'ê çima helwesteke wiha nîşan da?**

Wê dîrokzanên siyasetê baştir sedemên siyaseta rayedarên CHP'ê ya bi vî rengî derxînin holê. Wek min got, di wan salan de CHP ne tenê ji Kurdan dûr ket, herwiha ji nasnameya xwe ya sosyal-demokrat jî dûr ket.

**Wê CHP çawa bi Kurdan re lihevhatinê çêke? Di dema pêşiya me de wê siyaseteke çawa bide ber xwe?**

Ji bo ku CHP xwe bi Kurdan bide qebûlkirin û têkiliyên xwe germ bike, divê beriya her tiştî guhê xwe bide daxwaziya maf û azadiya wan û bi projeyên civakî, aborî û çandî bersiveke erênî derxîne holê. Ji bilî pirsgirêkên nasnameyê, li herêmê pirsgirêkên wek bêkarî, xezaniyê jî hene. CHP wê çareseriya van pirsgirêkan di nava yekitiyê de û li ser bingeha lihevhatina civakî ya hemû Tirkiyê, bibîne. Min gelek caran got ku ev pirsgirêka hemû Tirkiyê ye û divê têkiliyên Kurdan bi dewletê re ji nû ve bên avakirin.

**Serokê we yê Giştî, birêz Kiliçdaroglu, ji ber ku peyva Kurd nayîne ser zimanê xwe, pir tê rexnekirin. Li gor we, Kiliçdaroglu çima peyva Kurd bikarnayîne?**

Serokê me di her axaftinan de destnîşan dike ku wê CHP li ser bingeha etnîkî û bawermendiyê ti caran siyasetê neke. Ev nayê wê wateyê ku CHP guh nade pirsgirêkên etnîkên cûda û yên bawermendan. Heta ku ji bo pirsgirêka Kurd bernameyeke çareseriyê tune be, sed caran jî peyva Kurd bîne zimanê xwe, tiştek bê wate ye û dibe siyaseteke erzan a rojane. Em ê li ser bingeheke bêali a ku mafê mirovan, demokrasî û lihevhatina civakî dide pêşiya xwe, bersiva daxwaziya mafê Kurdan bidin.



**Bîografî**

Sezgin Tanrikulu di sala 1963'an de li Amedê hatiyê dinyayê. Li Zanîngeha Stenbolê Beşa Hiqûqê xwend. Di salên 1988-89'an de wek endamê sazûmankarê Komeleya Mafê Mirovan Şaxê Amedê xebitiye û di salên 2002-2008'an de jî Serokatiya Baroya Amedê kir. Di 1'ê Kanûna 2010'an de bû endamê CHP'ê û di 18'ê Kanûnê de di kongreya vê partiyê de wek Endamê Meclîsa CHP'ê hat hilbijartin û di dawî de postê Cîhgirê Serokê Giştî bi dest xist.

## Zimanê fermî ji bo dewletê, zimanê zikmakî ji bo mirovan e

**Birêz Kiliçdaroglu daxuyand ku ew ne li himberê fêrbûna kurdî ya ti kesî ye, lê ew li himberê perwerda bi kurdî ye. Di mijara perwerda bi zimanê zikmakî de hûn çi difikirin?**

Li gor min fêrbûna zimanê zikmakî û perwerda bi zimanê zikmakî du mafên mirovan ên sereke ne. Ji ber ku ev mijar bi dirûşmeyan tê guftûgokirin û li ser dijbertiya zimanê fermî-zimanê zikmakî tê meşandin, encamên şaş derdikevin holê. Min beriya 22 salan di gotarekê de wiha nivîsandibû: "Zimanê fermî ji bo dewletê, zimanê zikmakî ji bo mirovan e." Di dewleteke demokratîk de, di peymanên navnetewî de ku Tirkiyê jî ew îmze kirine, axaftina zimanê zikmakî bikaranîn û fêrbûna zimanê zikmakî û perwerda bi zimanê zikmakî mafên herî girîng în û divê di bin ewlekariya dewletê de bin. Em ê vê mijarê bi dirûşmeyan na, lê li ser bingeheke rasyonel a demokratîk guftûgo bikin û jê re çareserî bibînin.

**Piştî ku hûn tevlî CHP'ê bûn, bi taybetî li Amedê û bi giştî di nava Kurdan de hûn rastê nerazîbûnên çawa hatin?**

Min dixwest ez ezmûnên xwe yên 30 salî ku tê de xebatên min ên dema xwendevaniyê û yên saziyên sivîl ên civakî hene, têxim nava têkoşîna siyasî. Û wek hûn jî dizanin, li ser daxwaziya Serokê Giştî û gelek rayedarên partiyê, ez tevlî CHP'ê bûm. Hem li Amedê û hem jî di nav raya giştî ya Kurdan de, derbarê vê biryara min de, hinekan min pîrozî kirin û piştgirî dan û hinekan jî ez rexne kirim. Ev jî tişteke normal e. Min sedema biryara xwe vegot û got di şertên Tirkiyê yê rojane de ez CHP'ê wek navnîşana çareseriyê dibînim û ji bo vê ketim nava CHP'ê. Eger ku erîşê kesayetiya min nekin û ne li derveyê exlaqa siyasî bin, ez hurmetê didim rexneyan.

**Gelo dibe ku piştî hilbijartinan CHP li gor encaman bi AKP'ê, MHP'ê yan jî bi BDP'ê re koalisyonekê çêke?**

Di demokrasiyên parlamenter de, di hinek rewşan de, pêdivî derdikeve ku bi hemû partiyên di parlamentoyê de cîh digrin re, têkilî bên çêkirin, ango bihev re koalisyonê pêk bînin. Ev dibe ku demeke kin bajo, anjî heta dema parlamentoyê bi dawî bibe. Lê dema ku derbarê vê rewşa gelemperî de axaftin tên kirin, hinek alî encamên spekulatîf jê derdixin. CHP wek ku di kongreya xwe ya dawî de diyar kir û wek ku Serokê me yê giştî hertim dibêje, xwe ji bo desthilatdariya bi serê xwe amade dike. Ji bilî van alternatîfan û rewşa gelemperî, ez niha nikarim tiştek din bêjim.

## Herêma Kurdistanê ji bo aştî û demokrasiyê dibe mînak

**Hûn pêşketinên li Herêma Kurdistanê çawa dinirxînin? Derbarê pêşeroja Herêma Kurdistanê de nêrînen we çi ne?**

Pêşketinên ku di salên dawî de li Herêma Kurdistanê rû didin, hem ji bo Kurdan û hem jî ji bo aştî û aramiya herêmê gelek girîng in. Ti kes nikare girîngiya vê herêmê ya ji bo Tirkiyê piştguh bike. Beriya her tiştî Kurdên Îraqê ku rastê komkujiya Helebcê hatibûn û niha dikarin xwe bi xwe birêvebibin û ji bo aştî û demokrasiya Îraqe bibin mînak, ji bo me jî tiştên gelek bi wate û girîng in.

**Tirkiye di demên dawî de bi Herêma Kurdistanê re têkiliyên germ dimeşîne, gelo di vê mijarê de polîtikaya CHP'ê çi ye?**

Dereng be jî, têkiliyên ku Tirkiyê ligel Herêma Kurdistanê di çarçoveya destûra Îraqê de dest pê kiriye û li Hewlêrê balyozxane vekiriye, gavên gelek girîng in. Ev herêm cîranê me ye, têkiliyên me yên dîrokî pê re hene û Kurdên li Tirkiyê û li Îraqê xizmên hevdu ne. Ji bilî vana bazirganiya ku di navbera me de pêşketiye û gihaye 10 milyar Dolaran, ji bo Tirkiyê herêmeke girîng e. CHP wê di çarçoveya hiqûqa navnetewî de û bi têkiliyên cîrantiyê, bi perspektîfên aştî, ewlekarî û bazirganiyê bi herêmeke wiha girîng re têkiliyên xwe xurt bike.

***Hevpeyvîn: Firat Baran***

Bavê wê di dema hemaliyê de û dayika wê bi kanserê mirin

# Jinek bi 12 mêran re hat girtin

▶Mamê min ji zarokên xwe re cil kirî, lê ji min re nekirî.

▶Min ji X. hez dikir, lê wî pilan kiribû ku min bifiroşe.

▶Ew şev xwediyê serşoyê jî bi min re seks kir, nexwe nedihîşt em herin wir.

Dîmen Burhan Silêmanî

Bi sedemê karmendekî asayişê, Amîne hat girtin, lê girtina Amîne hêzên ewlekariyê şaş hiştin, ji ber ew li serşokê bi 12 mêran re hat girtin. Amîne yek ji wan qurbaniyan e ku bi destê toreke laşfiroşiyê, çarenûsa wê gihişt zindanê.

Bextreşiyên jiyana Amîneyê sala 1990'an destpê kirin: "Wê demê temenê min 7 sal bû, bavê min li bazara Silêmaniyê dema hemalî dikir kirîzê li dilê wî xist û mir." Bi mirina bavê wê aramiya mala wan namîne û dayika wê jî piştî demeke kurt bi kanserê dikeve û dimre. Bêkesî û bêxwedîtî Amîne. L. (28) berbi çarenûseke ne diyar ve dibe û ew û bira û xûşkên jê biçûktir diçin ba zirmamê xwe, lê wek behs dike, çîroka wan a tehl û êşên wan li wir zêdetir dibin: "Jinama min nedihişt bi zarokên wê re herim xwendingehê, ez jî digriyam û min dixwest min bişînin xwendinê, lê ez bêdeng dikirin."

Amîne bîranînên tehl ên heyama zaroktiya xwe di hembêza mala mamê wê de bi dilekî şikestî vedibêje: "Ew cejn qet ji bîra min naçe dema temenê min 8 sal bûn. Mamê min cilên xweşik ji zarokên xwe re kirîbûn, lê tiştek ji min re nekirî, ez di bin betaniya xwe derneketim û bê navber digriyam." Amîne nûxuriya dê û bavê xwe bû, li Silêmaniyê jidayik bû û mezin bû: "Herdem diêşiyam, ji ber cudakirina mala mamê min di navbera me û zarokên wan de, loma min hizra jiyana li derveyî vê malê kir."



Amîne niha di girtîgehê de ye û li benda kesekî ye ku wê bi kefalet berde.

### Haya wê ji xûşk û brayan nema

Navbirî li zindana girtin û guhastina Silêmaniyê yek ji van girtiyan e ku kêm kes serdana wê dikin, loma karê ku li ser hat girtin bêkesiya wê hê kûrtir kir.

Li gor gotinên Amîne, sala 2002'an mamê wê dema temenê wê dibe 15 salî, wê bi kotekî dide şivanekî: "Xortekî gêj û bêhiş bû, jê re digotin gêjo. Dû re dev ji şivantiyê berda û hat bajêr û li wir xaniyek kirê girt û em tê de jiyan. Min qet jê hez nekir, kar nedikir û rewşa me xerab bû, neçar bûm hawara xwe bigihînim kesek ku alîkariya me bike. Haya min êdî ji mala mamê min tune û li ser xûşk û birayên xwe tiştekî dizanim ."

**Min bawer dikir ku X. ji min hez dike. Lê ne wisa bû. Wî pilan danîbû ku min bifirose hinek mêrên din.**

Amîne xortekî cîranê xwe bi navê X. nas dike ku bi jin bû û dikana wî hebû: "Min têkilî pê re çêkir, her dema bixwesta yek ser karê xwe bi min dikir." Heta şeva ku ji aliyê polîsan ve hatin girtin, Amîne bawer dikir X. jê hez dike: "Lê ne wisa bû, wî plan danîbû ku min bifiroşe hinek mêrên din."

Piştî xwarina şîva roja 5'ê Çileya 2011'an Amîne û X. jivanekê saz dikin: "Cihê ku me diyar kiribû, serşokek bû li kêleka dikana X. wî karê xwe kir û çû, lê pişt re 11 kesên din hatin û hemû heval û nasên wî bûn. Zêde vexwaribûn, hemûyan destdirêjî kirin ser min û ez pir êşandin, êdî hevalekî X. ku asayiş bû hat û bi awayekî nehênî polîs agahdar kirin. Ez û X. saet 11'ê şevê li wir hatin girtin.. Niha ez poşman im."

### Xwediyê serşoyê jî seks pê re kiriye

Dema mirov berê xwe dide laşê Amîne, dibîne ku çermê wê jê hatiye têkdan. Ew bi xwe dibêje, ji ber ku 12 kesan bi hev re dixwestin karê seksî pê re bikin laşê wê wisa bûye. Niha Amîne li Zindana Girtin û Guhastina Silêmaniyê girtî ye û hê nehatiye dadgehkirin: "Ez ê niha bi kefalet bêm azadkirin, lê kes nîne bibe kefîlê min."

Serşoya ku Amîne û 12 mêr tê de hatin girtin, serşoya mêran e. Derbarê awayê derbasbûna vê serşoyê Amîne got: "Xwediyê serşoyê hevalê X. bû, wî jî seks bi min re kir, loma hişt em derbasî serşoya wî bibin."

### „Min ji bo pere ev kar kir“

Berpirsekî Zindana Girtin û Guhastina Silêmaniyê behsa çîroka Amîne dike û dibêje: "Bav û dêya wê mirine û li cem zirmamekî xwe bû û bêkes e. Amîne derewan dike û mêr nekiribû. Berê jî li ser laşfiroşiyê hatibû girtin. Niha jî bi 12 mêran re hatiye girtin."

Her çiqasî çavkaniyeke polîsan dibêje Amîne bi grûpa laşfiroşiyê re bûye, lê ew dibêje: "Tenê têkiliya min bi X. re hebû, min ev kar bo peydekirina pereyan dikir û mêrê min guh nedida min."

## Tendirustî

### Têkiliya cinsî

Di jiyana mirovahî de ev têkilî cihekî gelek girîng û pêwîst digre. Bi çêbûna têkiliya cinsî di navbera jin û mêran de zarok çêdibin û mirovahî toximê xwe li cîhanê zêde dike.



Dr. Sacît Gunêş*

**Giringiya têkiliya cinsî di jiyana mirovan de çi ye?**

**Dr. Sacît Gunêş:** Niha dema em dinêrin têkiliyê cinsî di jiyana mirovan de cihekî gelek giring digre, çawa pêwîstiya bedema mirov bi xwarin û vexwarinê heye wisa jî pêwîstî bi têkiliya cinsî ya di navbera jin û mêran de heye. Ew hestê cinsî bersivê dide bedena mirovan. Tekiliyê cinsî ji bo tendirustiya însan gelek baş e û alikariyeke xurt dide bunya wan. Wek tê zanîn gelek hormon di bedena mirov de hene; yek ji wan jî ya dilxweşiyê ye. Di têkiliya cinsî de hormona dilxweşîyê zêde dibe û pirsgirêke gelek hormonê wek maddeyan û hormonên di mêjû de dilgeş dike. Em dikarin wan hormonan jî wiha bînav bikin: Serotonin, histamin, ostrojen, oksitosin, adrenalin, endorfin. Wekî din hormonê ku sererast dibin jî ev in: Kortizol, Adrenalin, Tiroid, Insulin, Melanosit stimule. Deruniya dil jî sîstema xweparastinê pêşdixe jixwe ji bo bedenê jî werzîşek bê hema ye.

**Sedema êşê di têkiliya cinsî de çi ye?**

Di têkiliya cinsî de dema ku êş çêdibe di pizîşkî de em dibêjin nisparonî. Sedema êşê dibe ku ji ber infeksiyona di vajîna jinê de be, an jî, qalinbûna perda keçikaniyê be, gelek caran bi jinan re miyom, kist, di rehim de derdikevin ev jî di dema bi hevre bûna jin û mêran de dibe sedema êşê, herwiha pirsgirêkên pîskolojîk jî hene ev yek li ser nexwestina jinan e wextê ku jin bê xwestek be hîngê êşa wê jî çêdibe û herî dawî hinek septomê diwarê vajînê jî tê.



**Dema ku hinek malbat nexwazin zarok çêbibe divê xwe çawa biparêzin?**

Niha em di demek wisa de ne ku gelek îmkanê ku herdu cins jî xwe biparêzin, heye. Mînak tabletên rojane, derziya mehane û 3 mehan, spîral ev hemû aletê ku jin dikare xwe ji ducaniyê biparêze. Ji bo mêr jî xwe biparêzin prezervatîf herî baş e.

**Amadekirin: Zelal Çelîk**

**Dr. Sacît Gunêş jjinekolog e û ji Bakurê Kurdistanê ye. Ew niha li Stenbolê dijî.*


Wêne: Rûdaw

## 7 xwendekarên Kurd li Qeterê firokevaniyê dixwînin

# "Em garantiya çêkirina hêla asimanî ya Kurdistanê ne"

Îhsan Tahir Doha

Cemîl Elî Hesen (24) ji qezaya Mêrgesor e, li Zanîngeha Selahedîn li Hewlêrê xwendekarê kolêja Zanist bû, ew bi şeş xwendekarên din ên Kurdistanê re li Kolêja Firokevaniyê ya li paytextê Qeterê, Doha hatin wergirtin. Wan di 1'ê Mijdara 2008'an de têkilî bi vê kolêjê re kirin ku xelateke mezin pêşkêşî gel û welatê xwe bikin: "Kurd ne kêmî gelên din ên cîhanê ne, pêwîst e em vê rastiyê îspat bikin ku di hemû war û pisporiyekê de şiyanên me yên pir hene û em dikarin bi awayê herî baş kar bikin."

Navbirî dibêje ew û hevalên xwe girîngiyê didin xwendina xwe: "Armanca me ya sereke ew e di dahatûyê de ji bo Kurdistanê hêleke asmanî ya cîhanî ava bikin, ji ber şerteke sereke bo naskirina firokevaniya navnetewî ya sivîl IKU ku rê dide welatekî hêla xwe ya asmanî çêbike ew e ku ev welat xwediyê hejmareke firokevanên pispor be û çend firokeyan jî bikre."

Ehmed Şîno (20) yekî din e ji van xwendekaran û bi baweriya wî eger ew bên amadekirin, dikarin alîkariya ciwanên Kurdistanê bikin ku ew jî li kolêjên firokevaniyê li welatên derve bixwînin. Ev xort, ji ber jêhatîbûna mamosteyên kolêja Qeter a zanista firokevaniyê, daxwazên ji xwendekarên Kurdistanê dikin eger niyeta wan hebe fêrî firokevaniyê bibin, bila Qeter li bîra wan be: "Bê guman wê demê wê welatekî mîna Qeter ji ber naskirina me û wê xwestek û ciddîtiya ku me di vî karî de nîşan daye, alîkarî û karhêsaniyê ji xwendekarên Kurd ên din re bike da ku di vê kolêjê de, ku asta wê pir bilind e û ji gelek welatên cîhanê xwendekar bo xwendinê berê xwe didinê, bên wergirtin."

Ev du sal in Ehmed û hevalên xwe li vê kolêjê dixwînin, di vê demê de karîbûn kesayetiya rasteqîne ya mirovê Kurd nîşanî mamoste û xwendekarên vê kolêjê yên ku xwediyên nasnameyên cuda ne, bidin: "Em mînaka xwendekarê baş û serkeftî ne ku ji seranserê cîhanê bo xwendinê hatine vê kolêjê. Mamosteyên me jî şahidiyê li ser vê rastiyê didin û herdem me Kurdan wek mînakên baş nîşan didin. Hemû xwendekarên vê kolêjê daxwaza hevaltiya me dikin û nerînên gelekan li ser Kurdan hatiye guhertin."

## Kurdistan di vejandina aboriya Tirkiyê de rol dileyîze

# "Bêyî Hewlêrê, vejandina Mêrdînê zehmet e"

> Şanda DIKA serdana Herêma Kurdistanê kir. Serokê Giştî yê vê ajansê Abdullah Erîn got: "Ev serdana yekem e, lê nabe ya dawî. Em ê ligel şandeka wezareta pilandanînê dîsa werin." Hêviya mezin a Erîn ew e ku sînorên di navbera Herêma Kurdistan û Tirkiyê de bên rakirin: "Ev jî tiştekî ne dûr e"

**Hewlêr (Rûdaw)** - Ajansa Vejandina Dîcle, DIKA, ji 26 ajansên aborî ye ku plana vejandina aboriya navçeyî didin ber xwe. Wê saziyê di sala 2009'an de dest bi kar kiriye û ji bo vejandina aborî, civakî û îdarî ya 4 navçeyên Bakurê Kurdistanê (Sêrt, Şirnax, Mêrdîn û Batman) erkê plandanînê girtiye stûyê xwe. Sekreterê Giştî yê Ajansê Abdullah Erîn dibêje: "Li 50 zanîngehên Tirkiyê, grûbeke 50 kesî ligel me kar dike. Her yek di warekî de lêkolînê dike." Karkirina ligel van pisporan ku pêwîst e bi tevayî zimanê îngilîzî bizanin, bi awayê girêbesta 10 salî de ye.

Plan û programên vê ajansê ku bûtçeya wê ji aliyê Hikûmeta Tirkiyê hatiye diyarkirin, bi rêya civateke rêveber ji 4 walî, 4 serokên şaredarî, 4 serokên odeyên bazirganî û pîşesazî û 4 serokên civatên şaredariyan pêk tê, tên cîbicîkirin. Abdûllah Erîn dibêje: "Ji damezrandina ajansê heta niha, me nêzîkî 1000 biryaran dane û pêkanîne."

### Şaredariyên BDP'ê gelek bi serkeftî kar dikin

Erîn bal kişand ser wê yekê ku beşa herî zêde ya civata rêveberiya şaredariyên vê navçeyê, girêdayî Partiya Aştî û Demokrasî (BDP)ê ne. Erîn dide zanîn ku wan bi serkeftî mînakên lêhatî yên siyasî di çarçoveya plana aborî û mirovî de berdest bikin, lê herwiha berevajî dibêje: "Barê şaredariya van navçeyan bi sedema deynê zêde yê şaredariyên berê (Dema di destê partiyên din de bûn), gelek xerab bû. Hê jî wê deynê didin, lê karîne bi awayekî serkeftî çavkanî û pere ji bo pêşdebirina navçeyê desteber bikin. Di vê çarçovê de ajansa me gelek alîkariyê dide wan."

Sekreterê ajansa Dîcle balê dikişîne ser wê yekê ku ew xizmetan bê beramber pêşkêşî şaredariyan dikin: "Em bi vê yekêranewestiyane. Me derbarê hilberîn, ewlewiyeta aborî û mirovî ya vê navçeyê de raporên xwe pêşkêşî xwediyên kar û karsazên navçeyê û Tirkiyê kir. Em wan ji derfetên kar û sermayedarên ku alîkariya pêşdebirina navçeyê dikin, agahdar dikin."

> **DIKA**
>
> Ajansa Vejandina Dîcle, DIKA, saziyeke nîv hikûmî ye û pişta xwe bi pisporên plandanînê yên navxweyî û derve girêdide. Beşek ji pisporên li zanîngeha Harward mezûn bûyîn, alîkariya DIKA dikin ku bikaribe di plana vejandinê de serbikeve.

### Bê Herêma Kurdistanê planên me pêşde naçin

Sekreterê giştî yê DIKA ligel şandeke pispor ku ji 13 kesan pêk dihat, di çarçoveya grûbeke 27 kesî yên ku piraniya wan karsazên ji navçeyên Bakurê Kurdistanê ne, hefteya borî serdana Herêma Kurdistanê kirin. Erîn dibêje: "Di çarçoveya planên me yên navendî de, em nikarin bê daxilkirina Herêma Kurdistanê vejandina aboriya navçeyên me pêşde bibin. Vejandina Mêrdînê bê Hewlêrê zehmet e. Dema em dixwazin pêngavekê bavêjin, wek mînak li bajarekî wek Mêrdînê, em dibînin ku ji sedî 99'ê pîşesazî û karên bazirganî ligel Herêma Kurdistanê ye."

Erîn dibêje ku armanca wan a serekî ew e ku di plana 2013'an de, navçeyên Sûriye û Herêma Kurdistanê jî tevlî projeyek a vejandina navçeyî-herêmî bikin. Ango navçeyên hevsinor bi hev ve, di vê proseyê de temamkerî hev bin. "Em nikarin tenê wisa bifikirin ku em navçeyekî veqetiyayî ne, em bi hev ve girêdayîne û me jiyanek xweş bi hev ve girêdaye."

### „Em ê dîsa werin Kurdistanê"

Erin bi berdewamî balê dikişîne ser wê yekê ku warê hevkariya du alî gelek berfireh e û dibêje: "Ev serdana me ya yekem e, lê wê nebe serdana dawî. Ji ber ku em niyetîn meha sibatê li gel şandek a wezareta plandanînê ya Tirkiyê dubare bên serdana Herêma Kurdistan'ê."

# Sportvanên Kurd amadekariya federasyonê dikin

▶Li Swêdê ji hemû beşên sporê lîstikvan û tîmên Kurdan hene

▶Federasyona Werzişvanên Kurd li Swêdê tê damezirandin

▶Klûba Dalkurdê jî wê di Federasyonê de cîh bigre


Wêne: Rûdaw

**Stockholm (Rûdaw) -** Li Swêdê ji bo hevnasîna tîm û lîstikvanan, organizasyonên hevbeş û hevkariya werzişî, ji gelek beşên sporê kesayet, tîm û lîstikvanên amator û profesyonel li hev civiyan. Werzişvanên Kurd dixwazin di xebatên xwe de ji hevdu agahdar bin û bi navê Federasyona Werzişvanên Kurd li Swêdê dezgehek saz bikin.

Kurdên Ewrûpa ne tenê li Almanya di hêla sporê de çalak in û xwediyê yane û lîstikvanên curbecûr in. Li Swêdê Kurd ji fûtbolê heta voleybol, basketbol, handbal, Kung-Fu û karateyê di her beşan de çalak in û di medyaya Swêdê de bi serkeftinên xwe jî ten nasîn. Roja 22'ê Çileya 2011'an li Stockholmê bi tevlîbûna nûnerên 13 tîmên sporê û gelek kesayetên xwediyê ezmûn civînek hat lidarxistin. Armanc Rêncber ku serokê Klûba Stockholms IF Kurdiska ye û herwiha tîmeke mirovên temendirêj ên kêmendam birêvedibe, ji Rûdawê re ragihand ku ew dixwazin li Swêdê hemû dezgeh û kesayetên Kurd ên werzişvan bînin cem hev û bi vê armancê ji bo damezirandina Federasyona Werzişvanên Kurd li Swêdê gava yekem avêtine. Rêncber da zanîn ku nûnerên 13 klûban tevlî civînê bûne û ji ber ku ev civîna yekem e û bi her aliyan re têkilî çênekirine, hejmara ku çaverê dikirin hîn zêdetir bû. Rêncber bibîrxist ku ew ne tenê klûbên fûtbolê tînin cem hev û wiha pêde çû: "Li Swêdê di her cûrên sporê de Kurd çalak in. Ev nêzikî saleke ku ez ji bo vê projeyê dixebitim; em dixwazin hemû werzişvanên Kurd di bin baskê dezgeheke de bigihînin hev. Bi vî awayî em ê karibin kaliteya lîstikan, ezmûne lîstikvanan pêşbixin, organizasyonan li dar bixin, bingeheke hevbeş ava bikin da ku hemû nûner û sportvan hevdu nasbikin."

Armanc Rêncber destnîşan kir ku wê navê yekitiya wan Federasyona Werzişvanên Kurd li Swêdê be û got ji bo ku dezgeha wan bibe fermî, wan serî li dezgehên Swêdî dane. Rêncber da zanîn ku wek komiteya amadekar ew ê civîna xwe ya yekem di meha Adarê de li dar bixin û got: "Ne tenê ji Kurdan re, em deriyê xwe ji cîranên Kurdan re jî, wek lîstikvanên Tirk, Ereb û Farisan re jî vedikin."


Wêne: Rûdaw

Amadekarê damezrênerandina Federasyona Werzişvanên Kurd li Swêdê, Armanc Rêncber (di destê wî de kupa) dema ku xelata Fair-Play werdigre. Civîna yekem a werzişvanên Kurd (Fotoyê jor)

Li ser pirsa me ya ku werzişvanên Kurd ê hemû tîmên werzişî yên li Swêdê jixwe di bin baskê Federasyona Swêdê de cîh digrin, gelo ew federasyoneke din a alternatîf ava dikin an na, Rêncber wiha axifî: "Nexêr, lîstikvan û yaneyên Kurd ên profesyonel endamên Federasyona Swêdê yên fermî ne, armanca me ne federasyoneke alternatîf e, lê em dixwazin werzişvan û yaneyên Kurd hevdu nasbikin da ku em di navbera yaneyên Kurd de organizasyonan lidarbixin. Ango wê federasyone me saziyeke rêxistinî be, ne ya pêşbirkan û lîga."

## "Em jî tê de ne"

Serokê Klûba Dalkurdê Ramazan Kizil jî wek nûnerê tima xwe tevlî civîna 22'ê Çileya 2011'an bûye û ji bo damezirandina federasyona navborî piştgiriya xwe destnîşan kiriye. Kizil ji Rûdawê re ragihand ku ew jî wek klûba Dalkurdê bûne endamê Federasyona Werzişvanên Kurd li Swêdê, lê bi şertekî: "Eger ev dezgeh ji aliyê dezgehên dewleta Swêdî ve bê qebûlkirin û bibe fermî."

Ramazan Kizil jî pêdiviya yekitiyeke werzişvanî ya ji bo Kurdên Swêdê bibîrxist û got: "Klûba me ji xwe di Lîga Norra de cîh digire. Em bi nasnameya xwe tên naskirin. Lê ji bo organizasyonên di navbera Kurdan de yekîtiyek pêwîst e. Em tevlî civînê bûn û di prensibê de me got, em jî tê de ne. Em li bendê ne ku heta bê pejirandin û bibin endamê fermî."

# Tirkiye dikare bibe Lubnan?

Arjîn Yaman



Sala 1979'an dema şoreşa Îslamî ya Îranê bû, yek ji armancê Humeynî îxrackirina şoreşa Îslamê bû. Dixwest li tevahî erdnegariya îslamê desthilatdariya mollayan serdest bibe. Di heremê de eleqe jî çêbû. Bi taybetî di nava mezheba Şîî de zêdetir bandor çêkiribû. Lewma Şîî'yên ku ketibûn bin bandora şoreşê li Lubnanê di sala 1982'an de partiya Hîzbûllah damezrandin. Armanca wan derxistina Îsraîlê ya ji başûrê Lubnanê bû. Partiya Hizbûllah a Lubnanê ji roja avakirinê heta îro her tim bi ÎLi gor daxwaza Îranê dema pêwîst be şer dikin, serî hildidin, dema dixwazin aşitiyê dikin. Di biryara vekişandina partiya Hizbûllah a ji hikûmeta Lubnanê û qrîza kû rû da tê zanîn ku bi tiliya Îranê bû.

Îro herçend herdu dewlet weke dost xwe nîşan bidin jî ev 900 salin di navbera wan de şerê desthilatdariyê berdewam e. Di encama şerê Şahê Îranê Îsmaîl Şah û Yavûz Siltan Selim de her çend tixûb hatin diyarkirin jî lê şerê hêza desthilatdariyê her tim domand, hê jî didome. Dema şoreşa Humeynî rû da li bakurê Kurdîstanê jî bandor dike û Hizbûllah li Tirkiyê jî tê damezrandin. Herçend wê demê balê nekşîne jî, dixwazin bi serhildanên gel rejîma kemalîzmê hilweşînin, şerîhatê desthilatdar bikin. Di heman salan de PKK jî hatibû damezrandin û di nav Kurdan de bi bandor dibû. PKK rêxisitineke leşkerî bû, lê di heman demê de di nava gel de dibû rêxistineke siyasî jî. Di wan deman de Hîzbûllah ne mumkun bû ku di nava Kurdan de binhgeheke xurt ji xwe re ava bike. Dewleta Tirk heta 1990'an hêza PKK'ê ewqas ciddî nedigirt; her tim digotin 'çend eşkiya ne em ê koka wan xelas û zuwa bikin.' Lê wisa nebû. Bi gotina wan ew çend eşkiya kokê wan zûwa nebûn heta di warê leşkerî, siyasî de hîn xurttir bûn. Dema dewletê ev rastî ferq kir konseptên nû yên taybet amadekir kû PKK'ê xelas bike. Weke herêma avarte, JÎTEM, artêşa çahşan û hwd. pêşxistin. Nebû Hîzbûllah xistin dewrê. Kadroyên Hîzbûllahê di warê leşkerî û siyasî de hatin perwerdekirin, di her alî de îmkanên dewletê ji wan re vekirin û erîşê ser Kurdên welatparêz kirin. Di nava rojê de mirov dikuştun, bi rehetî vedikşiyan warên xwe. Bi hezaran Kurd kuştin. 1999'an de dema serokê PKK'ê Birêz Ocalan hate girtin dewlet dîsa hêvî kir ku wê PKK biqedînin. Lewma êdî pêwistiya wan bi hinek kes û rêxistinan nema ku di şerê taybet ê li himber Kurdan bikarbînin. Dewleta Tirk bi operasyona sala 2000'an ya li Stenbol-Beykozê qadroyên pêşeng ên Hîzbûlahê hemû kuştin, yê mayî jî avêtên girtîgehan. Tam deh sal in guleyek Hîzbûllahê neteqiya.

Ji ber ku bi van serbestberdanên vê dawiyê diyar bû ku di rastiyê de Hîzbûllah neqediya, bi metodekî din hebûna xwe di qada legal de berdewam kirine. Di dema desthilatdariya AKP'ê de bi sedan sazî û komalên civakî avakirine. Hîzbûllahê têra xwe alîgir peydakirine ku niha dixwazin têkevin parlamantoya Tirkiyê. AKP xwest bi riya teriqata Nakşîbendî cemaeta Gulen li Bakûrê Kurdîstanê bicîh bike. Bi riya wan her çend dengên DTP û niha BDP'ê hinek girtin jî lê pêşî li himberê sazîbûna BTP'ê nekarîbûn bigrin. Ev du salin dibêjin pakêta me ya çareserkirina pirsgirêka Kurd heye, lê heta niha ti tiştek diyar nekirin. Daxwaziya Kurdistana otobom û jiyana du zimanî jî, ji aliyekî listoka AKP vala derxist, ji aliyê din jî, ji bo Kurda bû moral. Li gor anketên dawî dengên BDP zêdetir bûne. Lewma careke din ji bo pêşî lê girtina dengên BDP'ê dewletê, artêş û AKP'ê li hevkirin. Careke din dixwazin Hîzbûllahê bikarbînin. Bi riya wan beriya hilbijartinan dixwazin di nava dengên Kurdan de belavbûnê çêbikin. Çapemeniya dewleta Tirk vala vala nûçeyên derew li ser 'şerê Hîzbûllah û PKK'ê nade. Ew dixwazin dîsa şerekî wisa derkeve. Lê wisa diyar e ku Hîzbûllah, wê weke berê xwe nede bikaranîn. Li gor daxuyaniyên Hîzbûllahê yên çapemeniyê, eşkere dibêjin em ê berê xwe ji çekan zêdetir bidin siyasetê. Lewma dibêjin bi berendamên serbixwe em dixwazin bikevin parlamentoyê. Ji bo pêkanîna van tiştan AKP qanûnek wisa derxist ku him Hîzbûllah daxwazên xwe pêkbîne, him jî AKP ji bo dema hilbijartinan wan bikarbîne. Daku di nava dengên Kurdan de belavbûnê çêbikin. Lê îcar dibe ku leyîstok weke berê neyê leyîstin. Li jor jî min armanca Hizbûllahê diyarkir. 31 sal berê bi pêşengiya Abdulvahap Ekincî dema Hizbûllah hat damezrandin ji rejîma Molla yên Îranê îlhama xwe girtibûn. Ev ilham her tim bû hêz ji wan re. Di operasyona sala 2000'an de dema qadroyên Hîzbûllahê yên sax mayî hatin girtin îtirafên gellek balkêş kirin. Abdulazîz Tunç di îtirafên xwe de digot; „Qadroyên rêxistinê yên bi bandor li çiyayekî nêzîkê Tehran perwerdeya taybet girtin û têkiliyên me yên rêxistinî ên bi Îranê re pir kêm kes di nava me de dizanin." Ger wisa ye, ma nabe ku tevgera Hîzbûllaha Tirkiyê weke partiya Hîzbûllah a li Lubnanê! milekî rejîma Molla ya Îranê be. Bifikirin ku 20 sal şûn ve hêzeke mezin a Hizbûllah a Tirkiyê ji xwe re bingehek avakirîye û di parlementoyê de ne. Gelo vana wê ji demokratîkbûna Tirkiyê re xizmetê bikin an jî, ji berjewendiyên polîtîk yên Îranê re? Ger ev tişt pêkwere, Îran di şerê ku sedan salan e ji bo desthilatdariya Rojhilatanavîn dide, li humber Tirkiyê wê nere pêş? Wê çaxê Dewleta Tirk divê hesabê xwe baş bike. Wê riya xwe bi Kurdên laîk yên ku demokratîkbûyîna sîstemê dixwazin re berdewam bikin, an jî wê bi Hûzbûllaha ku bingeha xwe dispêrîne Bakurê Kurdîstanê re berdewam bikin?




# Bila kes xwe neşewitîne

Hekîm Kakeweys



Li Tunûsê ciwanek bê kar xwe bi belgeyên zanîngehê ve şewitand. Bi agirê bedena xwe şoreşek çêkir, Bin Elî û hevsera wî jî bi 1.5 ton zêr ve reviyan. Ji ber ku gelê wî welatî wekî her gelekî din xwediyê îradeya xwe ne û nabêjin; "Li min nede, li birayê min bide û wisa dizanim li reşka kayê dide!"

Ew dînemoya dengdar a Kurdan nîne. Çend ciwan ji ber nerazîbûna girtina Abdûllah Ocalan, çi li Tirkiyê û çi li Ewrûpa xwe şewitandin. Lê xwe şewitandina wan jî bi awayekê bû, zerer ji derveyî xwe negihandin ti kesê. Ne benzînxaneyên Tirkiyê li gel gewdeyê xwe şewitandin, ne bazarek, ne polîsxaneyek û ne jî berpirsek ê dezgehekê. Tenê gewdeyê xwe! Agirê bedana wan hestiyê ti kesê newirijand û zerer negihand berjewendiyên ti kesê. Hemû cîhan jê beş bû: "De here xwe bişewitîne!"

Sed pilanên siyasetmedarên xwe ji bo Kurdên başûr eşkere bû û herçendî daxuyaniyek a nerazîbûnê jî nenivîsand û xwe şewitandin. Hêjmarek xeyal xwe di jiyana Kurdan de şewitandin û hew, eger nivîskarek bextreş xwe şêlo nekir. Lê niha di meşê de wekî zarvekiriyan, li vê derê û wê derê behsa xwe şewitandina ciwanên Kurd dikin û bi wê hesaba ku gelê Kurdistanê jî wekî Tunûsiyan serî hildin. Ciwanên Kurd ji aliyê partiyan ve wiha hatine perwerdekirin. Ji xweşiya gol kirina taxima Îraqa enfalcî, kîmyayî û qirkirina Kurdan gûle li xwe jî bireşênin û hemû karesat ji bîra wan biçe. Ciwanên Kurdistanê wiha hatin fêrkirin, Îraqîbin nekû Kurdistanî. Dema siyasetvanên Kurdistanê şerê navbera rêbazên fikrî, olî û mezhebên navbera enfalciyan têk didin, pêktênin, hikûmetê jê re ava dikin, artêşê pê bihêz dikin û şanaziyê pê dikin. Ciwanên Kurd dengê xwe dan destûra Îraqê û Êraqîbûna xwe pejirandin. Di dema avabûna Îraqê de bêyî ku kesê zorî lê kiribe; çend bajar û bajarokan deng nedan Îraqîbûna xwe. Em neslê niha bi kal, jin û ciwanan ve, ji sed salan zêdetir di aliyê netewî de ber bi paş ve vegeriyan. Her çendî çend pênûsên jan girtî, ji bo gûherîna wê rastiya ku ketine nav, behsa xweşewitandina ciwanên Kurd dikin!

Pêwîst bû ciwanên Kurd di dema şerê navxweyî de xwe şewitandiban. Pêwîst bû di dema maç kirina Saddam Huseyîn de, di aliyê netewî de ewqasî din navê Kurdan pê rizî, xwe şewitandiban. Diviya bû di dema hewandin û parastina enfalciyan de xwe şewitandiban. Pêwîst bû di dema razîbûna serokan a ji bo madeya qûmarê ya 140 a ji destdana Kerkûk û Germiyan ku ji sedî 48'ê Başûrê Kurdistanê ye, xwe şewitandiban. Diviya bû wê demê xwe şewitandiban, dema enfalciyên Bexda di Kurdistanê û dergehê Îbrahîm Xelîl re tevgerkirîn, derbazbûyîn, Sûltan Haşim bo serkirde û firokevanê Helebçe derbazkirîn. Dema kesê wê demê xwe neşewitand û niha behsa xweşewitandinê dike.

Heta wê roja ku dengdana ji bo Destûra Îraqê, me xwe wek Îraqî nasand. Gazindên me ji bo wê yekê hebûn ku dewletên di şerê yekem de, Kurdistan parçe kirin û bi dewletên derdorê re girê dan. Gazindên me hebûn ku welatê me dagirkiriye û me bi şoreşa xwînî derbirîna redkirina bindestiyê dikir. Piştî ku em bûn xwediyê dengê xwe, me deng da Îraqîbûna xwe, kesê jî rûyê xwe reş nekir, tiliya xwe ya morê nebirî û kesê jî xwe neşewitand. Li gel dengdana bi Destûra Îraqê, referandûm jî hat kirin û hewlên beravajî hebûn. Kesê negot erê helbestvan û ronakbîran ev têkelkirina xwe çawan pînekirin?! Piştî ku îradeya referandûmê jî hat kirin û deng hatin dizîn, kesê xwe neşewitand! Niha li Tunûsê ciwanekê xwe şewitand û encamek baş derket; çima nabêjin em jî wekî wan bikin?!

Xwe şewitandin kêrî me nayê û bila kes xwe ne şewitêne!... Divê carê ciwanên Kurd şapik li madeya 140 hilgirin û Îraqîbûna xwe jê bibin...Na, na...Bila berî her tiştê em hest bi wê yekê bikin ku xelkê Kurdistanê ne û ji bo serkeftina dewleta dagirker a Îraqê şahiyê nekin. Piştre xwe bişewitênin! Pêwîstî bi şewitandina me nemaye!



# Şaneya candar diafirîne

**Koln (Rûdaw) -** Ji bo yekem car di dîroka mirovatiyê de zanyarên amêrîkî karîn baktêrîyekê li gor pîvanên xwe çêkin. Genetîkerên Welatên Yekbûyî yên Amêrîka bi rêberiya zanyar Craig Venter careke serkeftineke dîrokî bi dest xistin. Venterê hatî naskirin bi afirandinên gumanbar ji hêla êtîkî ve du caran navê wî ketiye lîsteya Time ya di dinyayê de sed kesên xwediyê roleke herî girîng. Herwiha sala 2008'an wî ji serok Barrak Obama bilindtirîn xelata zanyarî ya WYA wergirtibû, National Medal of Science.

Venter sala 2001'an de gava wek yekem zanyar karîbû DNA ya mirovan bi temamî bixwîne, li seranserî cîhanê bû kesayetek naskirî. Li dijberî kompanyayên mezin ên ku bi dehên salan di pey şirovekirina DNA ya mirovan de bûn, Venter tenê di du salan de giha wê armancê.

Venter û zanyarên li dora xwe karîn parçeyên cûda yên genan ji hev veqetînîn û geneke nû çêkin. Dûre wan ev gena nûafirandî kirin laşê baktêryekê û hiştin gena wê bakteriyê winda bibe. Wisa bakteriyê tenê li gor gena nû tevdigeriya û madeyên li gor dilê zanyaran çêdikir.

Afirandina nû ya Venter ji bo çêkirina cûreyên nû yên baktêriyan gaveke girîng e, yên ku biologiya wan li gor daxwaza zanyaran be. Wek nimûne peydakirina cûreyeke bakteriyan a ku gazên CO2 ji bayê veqetînîn û gazeke din berdin. Yan jî afirandina bakteriyên ku karîbîn enerjiya biolojîk çêkin.

Venter li ser afirandina xwe di rojnameya Science de wiha dibêjê: "Ev alaveke gelek xurt e da ku em bihêlin biolojî tiştên em dixwazin bike." Herwiha ew giringiyeke fîlozofî di afirandina xwe de dibîne "Ez bawer dikim ev di zanistê de gaveke girîng e, lê di fîlozofiyê de jî. Bêguman vê tiştê nerîna min li ser rastiya jiyanê guhert û ser wê yekê çawa jiyan digere. "

### Oldar, zanyar û siyasetmedar wê ji vê gavê bitirsin

Gelek dezgeh û kesayetî nemaze yên olî nedurustiyeke etîkî di karên Venter de dibînin. Lê herwiha di nav zanyaran de li ser xebatên Venter hin guman peyda dibin. Tê gotin ku mezinê zanista DNSê û xudanê xelata Nobelê James Watson hevkarê xwe Craig Venter wekû Hitler dibîne.

## Hefta pêş me çalakiyên Kurdan

**Xwendevanên hêja,**

**ji vê hejmarê û şûn de êdî hûn dikarin peyam û îlanên xwe ji me re bişînin, ew ê bê pere li vir werin weşandin. Hûn dikarin peyamên sersaxiyê, pîrozbahiyan, agahiyên derbarê hemû cûreyên çalakiyan bi rêya e-mail a me (info@rudaw.eu) ji me re bişînin. Bi şertê ku nivîsên we ji 100 peyvan ne dirêjtir bin, em ê wan li vir biweşînin.**

---

**Konsera hunermend Mehmet Atli li şanoya Seyr-î Mesel li Stenbolê**

Dem: În, 4'ê Sibatê 2011, saet 20:00

Navnîşan:
Istiklal Caddesi, îmam Adnan-Nane Sok. No 5 Kat. 4
**Beyoglu/Stenbol**

---

**Grûpa Belweşan li Swêdê konseran dide**

Ev çend rojin grûpa muzîkê ya ji Rojhilatê Kurdistanê 'Grûpa Belweşan' li Swêdê ye û li bajarên curbecûr konseran dide. Grûp muzîka Yarîsan û Erdelan lêdixe. Keywer Kiyaniyan tembûrjen e, Jîwar Şexûl-Îslamî jî stranbej e.

---

**Xwepêşandan li dijî darvekirinên li Îranê**

Dem: Şemî, 5. Sibatê 2011
Demjimêr: 13:30
Navnîşan: Hauptbahnhof Dusseldorf/Almanya

---

**Çilrojiya Reşîd Hemo li Swêdê**

Hêjayî gotinê ye ku nemir Reşîd Hemo yek ji kesên ku partiya yekem a kurd li Sûriyê di sala 1957'an demezrandin bû.

**Dem û dîrok:**
Roja Şemiyê, 05,02,2011
Katjimêr: 14:00- 16:00

**Navnîşan:**
Alvik
Gustavslundsvägen 167
Stockholm

**Ji bo têkiliyê:**
0046-739375996
0046-707149673

**Çeperast:** 1- Paytextê Awistûrya – Dost, heval û hogir. 2- Di dîrokê de dewletek Kurd – Mal, serwet, hebûn (berepaş) – Notayek. 3- Mezel, qebristan – Cûreyek muzîka klasîk. 4- Na, no, nabe (berepaş) – Slogan, dûrişme (berepaş) – Demsala berf û baranê. 5- Şans, spartin, nesîb (berepaş). 6- Namûs, agir – Meqes, tiştê ku pê caw û qumaş tê birrîn – Dengê mîh û berxikan. 7- Baxçê tirî, werz – Nabe, ne mimkun e – Nijdevan, diz û keleş. 8- Belê, erê, gotinek ecêbmayînê – Fêkîyek – Namûs, heya. 9- Kevirek buha û bi nirx, bi taybet jin pir jê hez dikin – Navekî zilaman, comerd. 10- Kanalek televizyona Almanî – Rêxistina Ûsama Bîn Ladîn, rê û rêbaz.

**Serejêr:** 1-Kesên ku goşt naxwin, xwarinên bê goşt. 2- Meha 9. – Bi Ingilîzî rastî, rasteqîn. 3- Dost, canan, evîndar – Nehat, li paş e. 4- Fermandar, serdar – Îstasyona trênê. 5- Şeytanparêz, şeytanperest. 6- Kesê aştîyê dixwaze. 7- ....Esed, pêşnavê serokê Sûriyê (berepaş) – Pronavê yekem. 8- Pereyên Japonya – Haceta ku pê dar, text û hesin tê birrîn. 9- Nexweşîyek, pê cilên qetiyayî tên dirûtin (berepaş) – Ciyê çûn û hatinê, xet – Damar, çare, çareserî. 10- Karakter, adetên bedenî – Bi "bade" ve girêdayî. 11- Gul û çîçekek (berepaş) – Daxwaz, kam, meqsed. 12- Meha rojîyê (berepaş) – Na, nîne, nabe.

## Xaçepirs



### Bersivên hejmara 80

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | k | e | r | a | m | e | t | ■ | e | b | a | k |
| 2 | e | f | û | k | i | r | i | n | ■ | a | v | î |
| 3 | f | r | a | n | s | a | ■ | i | n | c | a | s |
| 4 | t | î | n | e | r | k | e | ş | ■ | a | m | ■ |
| 5 | a | n | d | ■ | î | ■ | v | a | d | n | e | b |
| 6 | r | ■ | a | r | ■ | q | a | d | î | ■ | z | ■ |
| 7 | ■ | ç | ■ | a | b | ■ | r | i | n | d | i | k |
| 8 | m | i | n | d | a | l | ■ | r | d | ■ | n | a |
| 9 | a | l | b | a | n | ■ | a | ■ | a | m | ■ | d |
| 10 | m | e | c | n | û | n | ■ | a | r | î | ş | e |

## SERSAXÎ

Bavê hevkarê me Ali Guler, Yusuf Guler (61), roja 9'e Çileya 2011'an li bajarê Bursayê ji ber tansiyona bilind çû ser dilovaniya xwe. Cenazeyê mam Yusuf Guler li Bursayê hat veşartin û taziya wî li bajarê Velbert a Almanya tên qebûlkirin. Malbata Guler ji Tatos a Erziromê ye.
Em bi navê hemû hevkarên Rûdawê ji malbata Guler re aramî û sersaxiyê dixwazin.

**Hevkarên Rûdaw Media GmbH**



**Yusuf Guler**

## Mamê Kêvroşk birengîne



## Çîrok

### Mamê Kêvroşk



Rojekê Mamê Kêvroşk dikeve rê û diçe ba nanfiroş û dipirsê: Gelo li cem te gêzer hene?
Nanfroş bi dengekî bilind û tore dibêje: “Nexêr, li vir gêzer nîne, careke din jî newe vir û nepirse!”
Lê belê Mamê Kêvroşk gelekî birçî bû û tebata wî ne dihat. Roja din carek din ket rê berbi nanfiroş û weke roja buhurî dîsa pirsî: “Ho nanfiroşo, ma li cem te gêzer nîne?”
Hêrsa Nanfiroş êdî da serê wî û xwe negirt, hew girte çepilkê mam kêvroşk û li ba xaça Hezretê Îsa ew daleqand.
Mam Kêvroşk avirek da kêlaka xwe û dît xaç jî weka wî daliqandiye. Vê carê ji Hezretê Îsa pirsî: “Gelo te jî weka min Nanfiroş hêrskiriye, lewma te jî bidardakirine?”

# Cibraîl dixwaze bibe HOSTAYÊ OTOMOBÎLAN



Wêne: Rûdaw

Cibraîl 8 salî ye. Hevalên Cibraîl ji wî re Gabriel dibejin. Ew li Almanyayê, li bajarê Wuppertalê dijî. Malbata Cibraîl ji Bakurê Kurdistanê, ji Mêrdînê ye. Cibraîl diçe polê 3’em.

**Rûdaw: Tu bi kurdî dizane Cibraîl?**
Cibraîl: Hinekî, ne zêde.

**Rûdaw: Çima?**
Cibraîl: Ji ber ku ne li cem dapîr û bapîrên xwe dijîm.

**Rûdaw: Tu qet çûyî Kurdistanê?**
Cibraîl: Na.

**Rûdaw: Tu dixwazî carekê here Kurdistanê?**
Cibraîl: Erê.

**Rûdaw: Li dibistanê ji kîjan dersan hez dike?**
Cibraîl: Ji matematîk û sporê.

**Rûdaw: Hobbyên te hene?**
Cibraîl: Belê hene. Ez ji fûtbolê û bazdanê hez dikim.

**Rûdaw: Tiştê herî xweş ku tê bîra te çi ye?**
Cibraîl: Dema ku min vînça xwe ya model ya LEGO çêkir, gelekî kêfa min hat.

**Rûdaw: Eger kesek 50 Euro bide te, tuyê çi pê bike?**
Cibraîl: Ez ê otomobîlek xwe ya model bikirim.

**Rûdaw: Dema tu mezin bûyî, tu dixwaze bibe çi?**
Cibraîl: Ez dixwazim bibim hostayê otomobîlan.

### Hûn jî tevlê bibin!

Zarokên delal,
ji vê hejmarê û şûn de êdî her hefteyê wê rûpela we jî hebe. Lê tenê li benda xwendina rûpelê nemînin, hûn jî dikarin tevlê amadekirina rûpela xwe bibin û rûpelê dewlemendtir û xweştir bikin. We jî hertim xeyal dikir ku wêneyê xwe di rojnamê de bibînin? Wê demê wêneyên xwe ligel kurteagahiyên derbarê xwe de ji me re bişînin, em ê li vir biweşînin. Wekî din jixwe em li benda rexne û pêşniyazên we ne. Hûn dikarên xwe bi rêya postê anjî bi rêya e-mailan bighînin me:

**info@rudaw.eu**

### Fêrî kurdî bibe

Av

ئاڤ